# Doza KCK`ê deriyê aştiyê vedike an deriyê şer?

Doza KCK'ê - ku niha 156 girtiyên Kurd tê de tên darizandin - li Amedê kete hefteya duyemîn. Ji derveyî welat û ji nav welat gelek pispor, siyasetmedar, rojnamevan dozê dişopînin. Siyasetmedarên ku Doza KCK'ê ji Rûdawê re nirxandin bal kişandin ser girîngiya wê û gotin ku ev doz dikare derî li aştiyê jî û li pevçûnan jî veke, ji ber ku Dewleta Tirk wê bi vê dozê helwesta xwe ya li himberî siyaseta sivîl a Kurd zelal bike. ▶2/3/7

Rûdaw
ÇAPA EWRÛPA
Xwendevanên Rûdawê bêtir dizanin




ئەگەر وەزیرێکی عێراقی نەبووا

"پێشمەرگە تەقەی لە پارێزگاری موسڵ یەدەکرد"

2 ◀

Deutschland 1,50 Euro | Danmark 15,00 DKK | France 1,50 Euro | Nederland 1,80 Euro | Schweiz 2,70 CHF | Sverige 21,00 SEK

Hejmar / Nr. 68 26 Cotmeh / Oktober 2010 | www.rudaw.net | info@rudaw.eu



Wêne: Rûdaw

Hevserokê BDP'ê Demirtaş, Komîsyona Lêkolîna Rastiyan pêşniyar dike:

# Sûcên ku PKK'ê jî kirine divê bên lêpirsîn!

▶7

## Çand û Huner

**Bavê Meymûnan**

Ev bîst sal in bi meymûnan re sîrk dike û li ser wan pirtûk nivîsandiye ▶8

## Diaspora

**Kurd û Cihû**

Serokê Komeleya Dostaniya Kurd-Îsraîlê têkiliyên xurt dixwaze ▶10

## Spor

**Tîma bê serkeftin**

Di Diyarbakirsporê de hesreta serkeftinê hîn didome ▶15



# 8500 malbatên Ereb li Kerkûkê bicîh bûne

Di dema desthilatdariya Saddam Huseyn de bi hezaran malbatên Kurd ji Kerkûkê hatin derxistin û li cihê wan bi hezaran malbatên Ereb bicih kirin. Piştî hilweşîna rejîma Baas biryar hat dayîn ew malbatên Ereb ku bi armanca Erebkirina Kerkûkê li bajêr hatibûn bicîhkirin, ji bo cihên wan yên berê bên vegerandin û weke alîkarî jî pereyekî diyarkirî weke "alîkariya vegerê" bo wan Ereban bê dayîn. Lê li gor çavkaniyeke haydar niha jî 14 hezar malbatên Ereb ku pereyê vegerê standine ji Kerkûkê derneketine. Serokê Parlamena Kurdistanê, Dr. Kemal Kerkûkî, got ku ji derneketina Ereban ji Kerkûkê wêdetir, piştî herifandina rejîma Baas 8520 malbatên Ereb hatine Kerkûkê.

Aliyên siyasî yên Kurd, weke Parêzgarê Kerkûkê, Serokê Civata Parêzgehê, Cîgira Serokê Lîjneya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140 û Rêvebirê Polîsên Parêzgehê jî -ku hemû Kurd in- berpirsyariya hatin û derneketina malbatên Ereb ji Kerkûkê dixin stûyê hevdu. ▶4



Erebên ku hatine Kerkûkê dijî maddeya 140 xwepêşandan dikin

# Kurdên Rojava ji Cezîre koç dikin

Li Sûriyê her ku diçe rewşa herêmên Kurdan xerab dibe û xelkê wan deveran neçar dibin ji warên xwe koç bikin, hem ji ber xemsariya Hikûmeta Sûriyê û hemjî hişkesaliyê. Çavkaniyeke Kurdî eşkere dike ku "ji sedî 99'ê koçberên ku di konana de dijîn Kurd in."

Serokê Yekîtiya Niştîmanî ya Azad, Ebdulfetah Dihêr, ji bo Rûdawê diyar kir ku ji ber rewşa dijwar 300 hezar kes ji Cezîrê derketine. Lêkolîneke Neteweyên Yekgirtî ya berî 6 salan diyar kiribû ku hejmara hejar û birçiyên wî welatî 1 milyon kes e, lê raporeke nû diyar dike ku ew hejmar dighîje 3 milyon kesan. Dihêr dibêje eger hikûmet projeyan li deverê sazneke, wê rewş xerabtir bê û civaka Kurd bikeve rewşeke metirsîdartir. ▶5






# "Dibe ku doza KCK'ê hêza Qendîlê xurtir bike"


Prz. Emîn Aktar

Serokê Baroya Amedê Prz. Emîn Aktar derbarê doza KCK'ê de ji Rûdawê re axifî. Aktar parêzeriya hemû girtiyan dike û di wê baweriyê de ye ku operasyonên bi vî rengi bingeha siyaseta demokratîk qels û destê hêzên çekdar jî xurttir dike.

Li himberê KCK'yiyan 7500 rûpel belge hatine amadekirin. Niha di vê dozê de 104 kes girtî, 152 kes jî li derve, tên dadgehkirin. Di operasyona di 14'ê Nîsana 2009'an de ji 1700 kes hatibûn girtin. Hûqûqnasê bi ezmûn Aktar dibeje, "Divê Tirkiyê baş nîqaş bike ka piştî operasyonan hejmara tevlîbûna gerilla zêde dibe an na."

**Ev doz çima dozeke siyasî ye?**

Ev doz bi rastî jî dozeke siyasî ye. Tenê ne ji bo girtina nûnerên legal ên DTP'ê û BDP'ê, divê em li îddiyan jî binêrin. Dozgerî biryarên ku endamên komîsyonên van herdu partiyan girtine, wek karekî rêxistinî yê îllegal bi nav dike. Hemû kar, gotin û siyaseta ku di vê dozê de wek "sûc" tê binav kirin, bi rastî karên hemû partiyên legal in. BDP jî wek CHP û AKP'ê partiyeke meşrû û legal e. Tiştek gelek normal e ku mekanîzmayên wê yên kontrolkirinê hebin.

**Di nava kesên girtî de ji bilî siyasetmedaran hiqûqnas jî hene...**

Rast e,di vê dozê de kesên wek Firat Anli, Muharrem Erbey, Siracettin Îrmak, Ebru Gunay, Şehmus Bayhan û 8 huqûqnas hene.

## "Parêzer ji ber parastina bersûcan tên dadgehkirin"

**Ji ber çi tên tawanbarkirin?**

Ew hevalên me ji ber dozên ku girtine ser milê xwe, tên dadgehkirin. Ji wan re tê gotin "Hûn parastina endamên rêxistinê dikin" an jî "Hûn parêzeriya Ocalan dikin." Ev kes ji ber ku karê xwe kirine, hatine girtin.

**Tawanbariyên li himberê Serokê Komeleya Mafê Mirovan, Şaxê Amedê, Prz. Muharrem Erbey çi ne?**

Rewşa Erbey gelek balkêş e. Jê re wiha tê gotin: "Hûn li derveyî welat tevlî çendîn konferansan bûn û di bernameyên televizyonan de we propagandaya rêxistinê kiriye." Li gor çi van tawanbaran dikin? Mirov nikare fahm bike. Ne belge hene, ne jî zanyarî. Tenê jê re dibêjin, "Gotinên we û gotinên rêxistinê dişibin hevdu." Ez jî heman tiştan dibêjim. Eger wiha berdewam bikin û dozê berfireh bikin wê nivê civakê bigrin û têxin girtîgehê. Mînak, PKK perwerda zimanê zikmakî dixwaze, wek Kurdekî û Serokê Baroya Amedê ez jî perwerda ziman dixwazim. Dema ku ez vê dixwazim, ma dibim endamê PKK'ê? Tiştek bê aqil e ku parêzer ji ber karên xwe bên tawanbarkirin.

**Her kes dizane ku rêxistineke bi navê KCK'ê heye. Gelo ev rêxistin çi ye, çawa tê birêvebirin?**

PKK rêxistineke çekdar e. Li Tirkiyê her kes dibêje bila PKK dev ji çekan berda. Ango, bila bingeha siyaseta sivîl bê amadekirin û kesên li çiya ne dakevin û werin siyasetê bikin. (...) Baş e, li jêr ev guşar û girtin wê siyaset çawa bê meşandin? Ma siyaset wê tenê di nav xetên dewletê de bê kirin? Na. Wê her kes karibe siyaseta xwe bimeşîne. Wê mirov bêyî ku dest bavêjin çekan bikaribin siyasetê bikin û rêxistinên xwe birêvebibin. Propagandaya xwe li gor siyaseta xwe bikin.

## PKK'ê bi armanca siyaseta sivîl pêşbixe, KCK damezirandiye

Divê dewlet xetên sor diyar neke. Dema ev tişt hebin wê tûndî jî derkeve. Meseleya doza KCK'ê wiha ye. Ka bila lêkolîn bikin, piştî operasyonên KCK'ê hejmara tevlîbûna gerîlla zêde bûye an kêm bûye? Bi van operasyonan bingeha siyaseta demokratîk tune dikin. Ev helwest destê mirovên çekdar xurtir dike. Baweriya ji çareseriya demokratîk qels dibe. Ji bo baweriya siyaseta demokratîk dîsa çêkin, divê rêya siyaseta legal vekin. .

**Gelo ji niha û pê de wê pêvajo çawa bibe?**

Niha îddianameya 7 hezar û 500 pel tê xwendin. Piştê xwendinê wê parastina girtiyan dest pê bike. Ez bawer dikim ku heta lêpirsîn neqede wê ti kes neyê berdan. Rewşa hemû girtiyan ne wek hev e. Hinek tenê ji bo ku siyaset kirine, hinek wek nûnerên rêxistinê hatine girtin.

**Gelo biryara girtinê derkeve?**

Biryarek wisa wê bibe sedemê gengeşiyan û pevçûnan. Gumanek wiha di nava raya giştî de heye. Em ji dîrokê dizanin ku li Tirkiyê di dozên wiha ku gelek kes girtîne, azadkirina wan kesan zêde dernakeve. Dema mirov li biryarên berê binere, dibîne ku dadgeh biryara 1,5 an 2 sal girtîgehê dide. Eger ceza bidin jî, gelek kes ji ber ku ji saleke zêdetir girtî ne, wê bên berdan.

*Hevpeyvîn: Adem Demir*

Serokê Şaredariya Surê ya Amedê Abdullah Demirbaş:

# Dixwazin me bi rêya dozê terbiye bikin!


Abdullah Demirbaş

**Medya Deniz**

Abdullah Demirbaş yek ji wan kesan e ku di operasyona li dijî KCK'ê bi "alîkarîkirina rêxistinê" tê tewanbarkirin. Ji ber nexweşiya wî saziyên civakî ew ji girtîgehê derxistin. Abdullah Demirbaş şaredarê Sûrê ya Amedê ye. Demirbaş doza KCK'ê ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd gelek girîng û wek gaveke dîrokî dibîne û dibêje, "Komara Tirk bi rêya doza KCK'ê dibêje em rêya demokratîk û mafên mirovatiyê nadin Kurdan, em hebûna Kurdan di siyasetê de nasnakin."

Demirbaş dide zanîn ku du wateyên vê doze hene. "Yek: An wê rêya demokratîk ji bo siyaseta Kurd pêşkeve, an wê rêya diyalog û axaftinê bê girtin."

Demirbaş ji ber ku di wê dozê de siyasetmedar, serokşaredar, endamên meclisan, endamên şaredariyê, endamên meclisa şaredariyê tên dadgehkirin dozê girîng dibîne û destnîşan dike: "Yan wê rêya demokratîk û siyasetê pêşkeve, an wê were xitmandin."

> "Bila Talabanî û Barzanî, ji bo çareseriya pirsgireka Kurd rola xwe ya dîrokî bilîzîn."

Demirbaş bibîr dixe ku li ser dozê hefteyek derbas bû û helwesta dadgehê tiştên neyênî derdixe pêş. Demirbaş wiha axivî: "Bo mînak parastina me ya bi zimanê kurdî hat qedexekirin, yanî wê dozê Peymana Lozanê jî înkar kir. Wateya xwe çi ye? Komara Tirk zimanê kurdî û mafên mirovên Kurd hîn jî qedexe dibîne. Bi rêya dadgeh û dozan dixwazin ku Kurdan terbiye bikin. Dixwazin Kurdan tasfiye bikin, dixwazin ziman û mafên Kurdan winda bikin. Dibêjin, ji Kurdan re rêya siyasetê qedexe ye, tenê rêya çiya û çekan vekiriye, lê Kurd jî dibêjin em ê siyasetê bikin û em ê mafên xwe yê mirovahî bi dest bixin. Em hêvîdar in ku di pêşerojê de ber bi başî ve here." Di derbarê eleqeya navnetewî de jî Demirbaş daxuyand ku ji bo dozê hem ji derveyî welat, hem ji hundirê welat gelek kesên wek parlamenter, siyasetmedar, parêzer, nûnerên saziyên sivîl hatine Amedê û wiha pêde çû: "Eleqeyeke gelek mezin heye, em spasiya wan dikin. Hêviya me ew e ku herin li welatê xwe mafê Kurdan û qedexekirina zimanê kurdî bidin nîşandan. Piştgirî û eleqeya xwe ya mirovahiyê berdewam bikin. Ji ber pêwîstiya Kurdan bi mirov û saziyên bi wî rengî heye."

Demirbaş di axaftina xwe de got ew hêvîdar e ku di pêşerojê de yekîtiya Kurdan ava bibe û wiha bang li sazî û siyasetmedarên Kurdan kir. "Başûr, Rojhilat, Bakur û Rojava tev yekîtiya xwe ava bikin û Konferansa Netewî li dar bixin. Ev ji bo me gelek girîng e. Herkes zanibe ku siyaset rêya çareserkirinê ye. Divê Kurd jî rêya ne çekdarî, lê siyasî bibînin. Em hêvîdar in ku ew doz pêvajoyke rêya veke û rêya çareserkirinê, rêya serkeftinê bide nîşandan. Ez banga xwe li herkesî dikim, ji bo aştî û demokrasiya Rojhilata Navîn destê xwe bidin hevdu, dem hatiye. Bi taybetî jî ez banga xwe li gelê Başûr dikim. Birêz Talabanî, birêz Barzanî, ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd bila rola xwe ya dîrokî bilîzin."




Rûdaw
Rojnameyeke siyasî û heftane

Xwedî
Rudaw Media GmbH

Serokê Civata Rêvebir
Nûredîn Weysî
nuradinwaisi@rudaw.net

Sernûser
Ako Mihemed
akopress74@yahoo.com

Rêvebirê Nivîsînê
Nasredîn Akyol
nasredin@rudaw.eu

Redaksiyon
Firat Kelehkî
kelehkî@yahoo.com

Mehmet Sebatli
sebatli@hotmail.com

Besam Mistefa
wardoz@gmail.com

Sîdar Bengîn Epozdemir
sidar@rudaw.nl

Dîzayner
Hamdullah Yumlu

Îdare û belavkirin
Mustefa Sefîq Edilbî
gare2005@hotmail.de

Şêwirmendê yasayî û aborî
Dipl. Kfm. Abdulletif Canimana
info@canimana.de

Navnîşan
Rudaw Media GmbH
Gutenbergstr. 63a
50823 Köln/Germany

Telefon: +49 (0) 221-26 00 40 02
Telefax: +49 (0) 221-26 00 49 81
www.rudaw.net
info@rudaw.eu

Siyasetmedarê Swêdî Peter Hulqviston:

# Ev dadgeh ne huqûqî ye, siyasî ye

Ji bo şopandina doza KCK'ê ku di 18'ê Cotmehê de destpê kir, ji gelek welatan delagasyon çûn Amedê. Yek ji van delegasyonan jî ya Partiya Sosyal Demokratên Swêdê bû. Piştî delegasyon ji Kurdistanê vegeriya me xwest fikrê wan û çavdêriyên wan li ser dadgeh û rewşa giştî bizanin. Siyasetmedar û parlamenterê Swêdî Peter Hulqviston û Evîn Çetîn pirsên me bersivandin: Peter Hulqviston ê ku di nava Partiya Sosyal Demokratan de yek ji pênc kesên rêvebir e, xuya ye ku gelek bandor lê bûye û li gor Swêdiyekî ya dilê xwe gelekî eşkere û vekirî anî ziman.

**Rûdaw: Hûn cara yekem çûn Kurdistanê, çavdêriyên we çi ne?**

**Peter Hulqviston:** Belê ev cara yekê ye ku wek parlamenterê sosyal-demokratan çûm Amedê û dibim mêvanê Kurdên Tirkiyê, lê ez gelekî xemgîn im, ji ber min dozeke wiha zor û rewşa Kurdên Tirkiyê dît. Wek parlamenterekî û serokşaredariyê kevin ê Borlänge vê rewşa heyî qebûl nakim. Bingeha dewleteke demokrat ew e ku siyasetmedar bikarin karê xwe yê civakî, siyasî bimeşînin û xwedî biryar bin, lê min di dadgehê de dît ku ti mafê siyasetmedaran tune ye, mafê parêzer û serokê komaleyên mafên mirovan jî tune ye. Ev neheqiya herî mezin e li hember demokrasî û pêşketina welatekî.

**"Min ev yek ji dewleteke wek Tirkiyê bawer nedikir"**



Peter Hulqviston ligel şaredarê Sûrê Abdullah Demirbaş (li rastê wî), Evîn Çîçek (li çepê wî)

**Çavdêriyên we yên li dadgehê çawa bûn?**

Ez ketim salona dadgehê û min temaşe kir. Ev dadgeh ne huqûqî ye, siyasî ye. Parêzeran di dadgehê de dan xuya kirin ku ew 151 kesên girtî xwedî çi erkê ne û rola wan di nava partiya BDP'ê de çi ye. Ev şexsiyetên hatine girtin hemû xwedî roleke mezin in di siyasetê de û hemû jî ji hêla gel ve hatine hilbijartin. Gelek ji van şexsiyetan bingehê partiya xwe ava kirine û didin meşandin. Û dadgeh dixwaze bingeha partiyeke qanûnî xerab bike bi vê dozê û partiya BDP'ê ji platforma siyasî derbixe. Ji ber vê yekê ez li hember vê dadgehê me. Ev dadgeh li dijî çareserkirina pirsgirêka Kurd a li Tirkiyê ye. Ev dadgeh aştiyê naparêze û ne demokratîk e. Divê em ji bîr nekin ku ev kesên tên darizandin ji hêla miletê Kurd ve hatine hilbijartin. Ev dadgeh ne tenê li hember şexsên girtî û BDP'ê ye, li hember her Kurdekî ku raya xwe bikar aniye.

Welatekî ku dixwaze bibe endamê Yekîtiya Ewrûpayê, gerek bihişta ku her girtî bi zimanê xwe yê zikmakî parastina xwe bikira. Lê mixabin dadwer ev yek qebûl nedikir. Ez ji nêzîkbûna dadgehê ya hember girtiyan şaş mam. Xuya bû gelek delîl ji polîsan û guhdarkirina telefonan hatibûn berhev kirin. 250 parêzer beşdarî vê dozê bûn, analîzên gelek balkêş dikirin. Di nav girtiyan de jî pênc parêzer hebûn. Ev ne li gor qanûna ti welatekî dinyayê ye. Min ev yek ji dewleteke wek Tirkiyê bawer nedikir.

**Hûn ji bo vê dozê li bendî çi encamê ne?**

Eger dewleta Tirkiyê dixwaze bikeve Yekîtiya Ewrûpayê, divê van girtiyên ku ji hêla milet ve hatine hilbijartin berde. Eger ev yek nebe, nexwe dewlet rêya demokrasî û aştiyê li Tirkiyê digre û alternatîfekê ji miletê Kurd re nahêle.

**Bîografî**

Peter Hultqvist di sala 1958'an de li Stora Tuna ya Swêdê ji dayik bûye. Ji sala 1973'an ve di nava Baskên Ciwanên Sosyal-Demokratan de karê siyasî dike. ji sala 1998'an heta 2006'an di şaredariya Borlänge de xebitî û serokşaredarî jî kir. Ji sala 2006'an ve parlamenterê herêma Dalarna ye. Ji sala 2001'an ve yek ji wan pênc kesên Rêvebirê Komîteya Partiya Sosyal-Demokrata ye. Di hilbijartinên dawî yên Swêdê de, dîsa wek parlamenter hat hilbijartin û niha di Komisyona Makezagonê û di Komisyona Şer de cîh digire.

**Herkes dibêje ev doz wê rolekê di çareseriya Pirsgirêka Kurd de bilîze, yanî eger ku bên berdan wê aştî çêbibe. Ji xwe niha PKK'ê jî agirbest ragihandiye, lê ku ceza jî bidin wê şer dijwar bibe. Hûn çi difikirin û çi pêşniyaz dikin?**

Daxwaziya min ew e ku ev kesên girtî bên berdan û daxwaziyên wan ji bo azadî û aştiyê bên qebûl kirin. Ez li hemberî kuştina me, nabe ku ti milet rastî şîdetê bê. Divê pirsgirêka Kurdan bi rêya demokrasiyê bê çareser kirin. Loma ev doz gelek giring e. Û çavê Komisyona Ewrûpayê li Tirkiyê ye. Di meha pêşiya me de wê rapora nû li ser pêşketina Tirkiyê bê amade kirin, biryara dadgeha Amedê ya li ser vê dozê wê cihekî giring bigire. Hêvî dikim ku Tirkiye gelekî baş bifikire.

*Hevpeyvîn: Fatma Savci*

---

Fatma Savci

# Ez jî tevlî darizandina KCK'yiyan bûm!

Her ku ez diçim Amedê coşeke mezin bi dilê min digire. Mîna evîneke tije nepenî her carê cîhaneke cuda nîşanî rihê min dide, lê vê carê ne tenê bi coş bûm, gelek pirs di serê min de hebûn û meraqek cuda jî pê re. Erê ez vê carê ne ji bo berşdariya konferansekê, an ji bo xwendina helbestê diçûm Amedê. Ne festîvala çandî ne jî rojên wêjeyê hebûn li holê. Wê doza KCK (Koma Civakên Kurdistan) ku nûnerên Kurd pê tên darizandin destpêbikirana. Ez ê di 18'ê Oktoberê de beşdarî doza siyasetmedarên Kurd bûbama.

Ez 16'ê mehê hatibûm û hîna du rojên min hebûn ku ez li bajêr jî bigerim, herim serdana surên Amedê ku bîna min derdixin û rûyê dîroka kevnar nîşanî min dikin. Min çenteyên xwe danîn otêla xwe ya ku li "Deriyê Çiyê" bû û ez ber bi meydana wê ya biçûk ve meşiyam. Taybetiyeke "Deriyê Çiyê" heye û her Kurdê ji dîroka xwe haydar ku digihîje meydana ber derî bi dilê xwe digire û birîna xwe dişeqitîne, ji ber ku li wê meydanê di bin wê çementoya sar de, hestiyên Şêx Seîdê Kal ku demekê ji serhildana Kurdan re rêberî kiribû veşartîne. Piştî ku Şêx Seîd bi darve kirin termê wî jî wek yên gelek rêberên Kurd wenda kirin û gora wan vedizîn ji xelkê.

Dema li bajêr digerim, di her fersendê de bi xelkê re sohbet dikim û pirsan ji wan dikim. Tirsa berê ya bi milet re şikestiye. Tevî ku ez xwe nadim nasîn min wek rojnameger texmîn dikin û fikra xwe vedibêjin. Ez tiliya xwe bi kîjan problemê ve dikim, ew çareseriya wê di rawestandina şer de dibînin, di gav avêtina dewletê ya ji bo aştiyê de dibînin û dibêjin: Niha PKK şer rawestandiye, li bendî destên dewleta Tirk a aştiyane ye. Em ê niyeta Tirkan di vê doza KCK de fam bikin. Di berdan û an jî di cezakirina nûnerên Kurd de wê her tişt zelal bibe. Herkes bi baldarî û hinekî jî bi tirs li bendî destpêkirina dozê ye. Ez hîs dikim wek ku bajarê Diyarbekir li ser agir e, di nava xwe de dikele.

Piştî saet dehan encex milet derbasî salona danişînê kirin. 260 parêzer rûniştîbûn. Girtiyên jin û mêr jî anîbûn salonê. Hemû radibûn ser xwe, endamên delegasyon û malbatên xwe silav dikirin. Girtiyên ku ev salek bû di zîndanê de bûn û ji dervî mirovên xwe yên nêzîk qedexe bû kesekî bibînin jixwe bawer rewestiyabûn û devliken bûn. Ev salek bû ku girtîbûn, dozgeriyê ji bo sucdariya wan 7571 rûpel îddianame amade kirine. Ji 151 nûnerên Kurd re bi tevahî 3 hezar û 326 sal ceze tên xwestin. Li gor hemû derdoran ev doz ji bingeh de tije bê qanûnî ye. Ev kesên ku di 14'ê Nîsan aa 2009'an de hatine girtin, piştî 18 mehan derdikevin dadgehê. Ev hemû kes wek endamên rêxistineke bi çek tên darizandin, lê di şeva ku êrîşî ser mal û saziyên wan kirin de, kêrikek jî negirtin û tiştekî qedexe nedîtin. Îdîanameya wan ne li ser çalakiyekê, lê ji guhdarkirina telefonê ya sê salan hatiye amade kirin.

Serokê heyeta dadgehê dema navê girtiyan xwend, hemuyan bi kurdî bersiv da: "ez li vir im. Ez amade me". Dema dest bi tespîtkirina nasnameya girtiyan kirin jî girtiyê pêşî ku hat ser kursî wisa destpê kir: navê min...paşnavê min.. dema ku ev peyv gotin, mîkrofon qut bû û dengê girtî jî hew hat. Êdî bi rêzê girtiyên ku hatin bi kurmancî û zazakî dest bi axaftina xwe dikirin û heyeta dadgehê dengê wan dibirî. Çend girtiyan jî ji bo vê helwesta deng birîna peyva kurdî protesto bikin, qet dengê xwe dernexistin û bi deqeyan wisa bêdeng rawestiyan li ber mîkrofonê. Çend girtiyan jî, dema ku navnîşana wan dihate xwendin wan îtiraz dikir û digotin: navnîşana me ne rast e, hatiye guhertin, divê bê rastkirin. Bi vê yekê jî didan xuya kirin ku navnîşana wan a niha zîndan e. Dadgeh bi vî awayî dirêj domiya.

Heta roja dadgehê jî ne girtî, ne jî parêzerên wan nikarin li ser vê dozê tiştekî texmîn bikin. Lewra herkes dibêje tiştek li gor qanunan nameşe, ev ne dozeke huqûqî ye, lê siyasî ye. Herkes westiyayî bû. Ez dizanim westiyana wan ne tenê fizîkîbû, ew westiyana şerê 30 salî û encamên wî yên xedar bûn. Ya xerab jî ev doza ku wê dahatûya wan nîşanî wan bide, ne pir baş çûbû. Hîna ji serî de qedexekirina parastina bi zimanê kurdî û peyamên rayedarên dewletê ew bedbîn dikirin û hêviyên wan dişikandin.

Wexta ez ji Amedê derketim, giriyê jina girtiyekî yê bidizî çavê min şêlo dikirin û mîkrofona ku li ser dengê peyva :"Navê min" dihat girtin çivîkên nava min birîndar dikirin.

**Bayram Ayaz**

## Em li vir in, li welatê xwe!



Ev sernivîs bi bersiva zîndaniyên dawa KCK'ê ve peywendîdar e. Ew bersiva ku zîndaniyan bi kurdiya şîrîn dan hakimê mahkema Diyarbekirê, gotin: "Ez li vir im!". Dema me ev xeber xwend wek welat perwerekî Kurd em bi vê helwestê gelek keyfxweş, kubar û serbilind bûn.

Zimanperwerî, destpêka welatperwerî û neteweperweriyê ye. Kesê ji zimanê xwe hez bike, ji welat û miletê xwe jî hez dike. Ev zanîn û hestiyarî, serçavî û avzema doza Kurd û Kurdistanê ye, ji ber vê yekê, helwestê bersivdana bi zimanê Kurdî, bi tena serê xwe bersiva her tiştî ye. Ne hewceye, mirov bi sedan rûpelan bersiva bohtan û tohmetên dewleta dagîrker bide. Ew tohmetên hîç û pûç ku me welatperweran bi gunehbariya "xiyaneta welat" sucdar dikin, lê kîjan welat û kîjan xiyanet?

Ey hakimên dewleta Tirk, we bi zimanê fermî yê dewleta xwe ji me pirsî, me jî bi zimanê xwe bersiva we da. Hûn zimanê me nizanin, tênagihin! Hûn li dadgeha xwe axaftina zimanê me qedexe dikin! Heq, huqûq û edaleta we, ev e! Sîstema dewleta we ev e. Hûn behsa kîjan xiyanet û gunehbariyê dikin? Belê, li holêsucek, gunahbariyek heye û hem jî suceke gelek giran e! Lê hûn zanin, ev suc çiye û kî vî sucî dike? Ev suc, înkariya hebûna xelkê Kurd ku hejmara wî bi dehanmilyonan e! Evsuc, înkarî û qedexekirina ziman û çanda vî xelkî ye! Evsuc, înkarî û dagîrkeriya welatê vî xelkî ye! Navê welatê me Kurdistan e bi serê xwe cîhê tirs û xofê ye. Ji ber gotina Kurdistanê hûn newêrin arşîvên xwe vekin. Eger arşîv vebin, wê ronahiya dîrokî we rûreş bike. We ev gotin jinav zimanê Tirkî derxistiye! Gelo ji vê sosrettir li vê dinyayê tiştekî din heye? We gotina Kurdistan li zimanê xwe û li xelkê xwe qedexe kiriye!

Belê, suc ev e û vî sucî dewleta Tirk dike. Siyaseta dewletê gunehbare. Zîndaniyên dawa KCK'ê bi bersivekî kurdî kurt ev sucdarî aşkere kirin. Ev helwestekî rast e. Em hêvîdar in, ev berdewam be û hewceye tevgera Bakûrê Kurdistanê bi yekdengî piştevaniya vî helwestî bike. Eger di axaftina kurdî de bi îsrar bin, mahkemeyên tirk çi dikin bila bikin, ev dawa wê ji bo Dadgeha Mafên Mirovî ya Ewrûpayê vegere û bibe doza darizandina sîstema dewleta Tirk.

Li mahkemên Tirkan axaftina bi Kurdî helwestekî zaf bi tesîr e. Vê berxwedanê salên 80'î Mehdî Zana destpêkir, piştre rêvebirên Hak-Parê, TevKurdê û kesayetên wek Îbrahîm Guçlu berdewam kirin. Niha jî zîndaniyên KCK'ê vî erkî bicîh tînin. Ev helwest doh jî rast bû, îro jî rast e. Doh me piştevaniya Mehdî Zana, Îbrahim Guçlu, Hak-Par û TevKurdê kir. Îro em piştevanên zîndaniyên dawa KCK'ê ne. Belê, xûşk û birayan, hûn li pêş mahkeman dibêjin "ez li vir im", welatperwer jî li hemû deveran dibêjin: em li vir in, li welatê xwe ne, bi Kurdiya xwe ya şîrîn diaxivin, emê hertim hebin û biaxivin.

## Hewlêr piştî 20 salan berê Amsterdam Airlines dide Bexdayê

**Amsterdam (Rûdaw) -** Şirketa firokevaniyê ya Amsterdam Airlines ragihand ku ew ê di 31'ê Cotmeha 2010'an de yekem geşta firokeyên xwe ji firokexaneya Schiphol a Amsterdamê ji bo Hewlêrê destpê bike. Ev jî weke amadekariyekê ye ji bo ku di çend hefteyên dû re dest bi geştên xwe ji bo Bexdayê jî dike. Rêvebirê şirketê, Yap Horstin, dibêje: "Geşta Hewlêrê wê dîrokî be, ji ber ev dibe nêzîkî 20 salan ku firokeyên geştyarî yên Holandî neçûne Bexdayê. Niha Hewlêr wê rêyê vedike."

Geştên navbera Schiphol-Hewlêrê wê hefteyê carekê bên lidarxistin û nirxê tikêta seferê bi rêya wê şirketê 249 Euro ye. Li gor agahiyên Rûdawê, şirketa almanî Lufthansa û Austrian Airlines a awisturyayî jî, piştî serkeftina tecrubeya geştên wan ên berdewam ji bo Hewlêrê, plan dikin ku di sala 2011'an de dest bi geştên xwe berbi Bexdayê jî bikin.






### Kurd hevdu tawanbar dikin

# Kurd xemsar in, Ereb bicîh dibin!

**Newzad Mehmûd** Silêmanî

Berpirsekî ewlekariyê li navçeya Celewla ji bo Rûdawê ragihand ku rojane malbatên Kurd li Celewla ji ber gefên terorîst û şovenîstên Ereb ji malên xwe bar dikin û berê xwe didin navçeyên Germiyan, Silêmanî û Xaneqîn: "Carna ne rasterast destê rûniştvanên Ereb ên navçeyê jî tê de heye, dema agahî û navnîşana malên Kurdan didin terorîstan. Heta niha nêzîkî 600 malbatên Kurd neçar bûn ji Celewla û derdora wê bar bikin."

Serokê Parlamena Herêma Kurdistanê, Kemal Kerkûkî, diyar dike piştî hilweşîna rêjîma Seddam 8520 malbatên Ereb ji bo Kerkûkê hatine şandin û planek ji bo têkdana terazûya demografiya bajêr li holê ye: "Piraniya Erebên ku hatine Kerkûkê, sê-çar jinên wan hene û hinek ji wan hene hejmara endamên malbata wan digihe 22 kesan. Ger rewş wiha bidome û referendûma Kerkûkê bê paşxistin, wê zerer bigihe gelê Kurd." Li gor agahiyên ku ji çavkaniyeke agahdar gihane destê Rûdawê, 14 hezar malbatên Ereb ku ji derve hatine Kerkûkê û perên bedelê vegera cîhên xwe yê berê jî standine, lê hîn jî malên wan li bajarê Kerkûkê ne. Serokê Dezgeha Serjimêriyê ya Îraqê, Mehdî Ellaq, dibêje di dema serjimêjiyê de - ku biryare li 5'ê Kanûn a 2010'an bê lidarxist - malbat li ku derê be, li ser wî cihî tê tomarkirin.

### Mele Bextiyar: Parezgarê Kerkûkê û serokê civata parêzgehê berpirsyar in!

Jinûve Erebkirina Kerkûkê berpirsên Kurd jî dilgiran kiriye û wan dest bi tewanbarkirina hevdu kiriye. Di hevpeyvînek ligel kanala Kurdsat de, Kargêrê Polîtburoya YNK'ê, Mela Bextiyar, rexne li parêzgar û îdareya Kerkûkê girt û pirsî: "Başe parêzgar li benda çi ye, çima van Ereban dernaxe, tevî ku desthilata wî ya qanunî ya tevahî bo derxistina van Ereban heye?" Lê Parêzgarê Kerkûkê Abdulrahman Mistefa dibêje ku ti têkiliya wê yekê ligel wî tune û her tiştê bi awayekî ne yasayî hatibe, wan ferman daye polîsan ku wan derbixin. Mistefa diyar dike ew amade ye bi belgeyan van tiştan nîşan bide: "Her malbata ku bedel standibe û dîsa vegeriyabe, me daxwaza navnîşana wan ji Buroya Maddeya 140 kiriye, ji bo ku polîs wan derxin, lê ew dibêjin navnîşan li cem me jî nîne."

Mela Bextiyar wan berpirsê Kurd rexne dike û dibeje: "Loma post ji parêzgar û serokê civata parêzgehê re hatine dayîn ji bo ku berpirs bin, yasa desthilatî daye parêzgar ku nabe malbatek jî biçe Kerkûkê." Serokê Civata Parêzgeha Kerkûkê, Rizgar Elî, ku endamê serkirdayetiya YNK'ê ye, berpirsyariyê dixe stûyê Parêzgarê Kerkûk: "Desthilata parêzgar heye wan derbixe. Li gor yasa parêzgehên a hejmare 59 -ku sala 1969'an derketiye- parêzgar serokê lîjneya ewlekarî ye."

### Rêvebirê Polîsê Kerkûkê: Em nikarin hatina Ereban kontrol bikin!

Aliyên îdarî yên Kerkûkê tiliya berpirsyarkirinê ji bo Cîgira Serokê Lîjneya Bilind a Cîbicîkirina Maddeya 140, Nermîn Osman, dirêj dikin. Nermîn Osman jî dibêje ku gok di yarîgeha parêzgar, serokê civata parêzgehê, polîs û xelkê Kerkûkê de ye û dibêje: "Bila xelk jî rê nedin wan ku bên, bila parêzgar û civata parêzgehê nehêlin herin Kerkûkê."

Cîgirê Berpirsê Liqa 3'ê ya PDK'ê li Kerkûkê, Mihemed Xorşîd, dibêje: "Divê êdî sînorek ji xemsariya îdareya Kerkûkê re bê danîn, em herdem dilgiraniya xwe ji bo wan û Amerîkiyan jî tekez dikin û dixwazin bi her yasayekê be ev malên Ereb biçin." Mihemed Xorşîd bi guman dipirse: "Gelo tenê Kerkûk bajarê aram e ku ji her alî Ereb bên, ev proseseke siyasî ye ji bo dubare Erebkirina Kerkûkê."

Berpirsên ewlekariyê yên bajarê Kerkûkê dibêjin ew nikarin van hatinên ne yasayî hemuyan kontrol bikin. Rêvebirê Polîsê Qeza û Nahiyên Kerkûkê, Komîser Serhed Qadir, ragihand: "Mela Bextiyar rast dibêje û hejmareke zêde ya Ereban hatine, ev jî meseleyeke siyasî ye û destê şovenîstan li piştê heye û bi bername hatine." Navborî herwiha got: "Me bi dehan malbat kelepçe kirin û derxistin, lê ev ne çareserî ye, ji ber Ereb wek lehiyê hatine Kerkûkê."

Wezîrê Plandanînê yê Hikûmeta Îraqê, Elî Baban, ku di dema hilbijartinên Parlamentoya Îraqê de got Kerkûk ser bi Kurdistanê ye, niha dibêje ji ber nerazîbûna Erebên ku hatine Kerkûkê, şovenîstên Mûsil û Bereya Turkmenî, cuda ji hemû serjimêriyên Îraqê xaneya 'netewe' ji forma serjimêriyê bê rakirin. Serokê Lîjneya Amadekar a Serjimêriyê li Herêma Kurdistanê, Elî Sindî, got eger ev bê kirin, Herêma Kurdistanê û gelê Kurd tevlî serjimêriyê nabin.

Wezîrê Rewşenbîrî yê Hikûmata Herêma Kurdistanê yê berê, Felekedîn Kakeyî, di hevpeyvînek ligel Rûdawê de -ku di hejmara 67 de hat weşandin- diyar kir ku Kurd, nemaze PDK û YNK, di sala 2003'an de bê bername bûn, derbarê wê yekê de ka li Kerkûkê çi bikin. Kakeyî herwiha got ku niha metirsiya wêya heye ku Erebkirin bi biryareke parlamento -ya bi piraniya Ereb- bê ferzkirin û ew ti asoyek ji bo vegerandina Kerkûkê nabîne li jêr saya hevkêşên Îraqê yên niha: "Ji bilî ger bûyreke mezin li welatekî cîranê Îraqê rû bide." Kakeyî bêdengiya serkirdayetî û gelê Kurd derbarê paşxistina prosesa serjimêriyê wek 'tawaneke mezin' binav kir û got: "Ev serjimêrî ji bo me wek referendûma Başûrê Sûdanê girîng bû." Felekedîn Kakeyî li gor tecrûbeya aliyên Îraqî ligel Kerkûkê dibêje: "Malikî be yan Elawî, her kesek li Bexda desthilatdar be, wê Ereban bîne Kerkûkê."

### 37 hezar malbatên Ereb hatine Duhok, Hewlêr û Silêmaniyê

Li gor serjimêriya Buroya Koç û Koçberên a Wezareta Navxwe ya Herêma Kurdistanê, piştî hilweşandina rêjîma Saddam di sala 2003'an de, heta niha 37.889 malbatên Ereb ji navend û başûrê Îraqê berê xwe dane hersê parêzgehên Herêma Kurdistanê û 9418 malbat hatine Hewlêrê, 18406 malbat hatine Duhokê û 10065 malbat jî hatine Silêmaniyê.

# Li Sûriyê xweza û hikûmet bi hev re şerê Kurdan dikin



## Hişkesaliyê hejarî çêkir û gelek malbatên Kurd ên Rojavayê Kurdistanê neçarbûn koçbikin û di konan de bijîn.

**Besam Mistefa**

Li Sûriyê bi giştî û bi taybetî li navçeyên Kurdnişîn, xweza û hikûmet dijî Kurdan radiwestin û hejarî, belengazî û koçberî her ku diçe zêdetir dibin. Siyasetvanekî Kurd dibêje: "ji sedî 99'ê koçberên ku di konan de dijîn Kurd in." Mafnasekî Kurd jî dibêje: "xweza jî bandor li xerabiya rewşê kiriye, lê hikûmet berpirsiyarê yekem û dawî ye."

Gelek rapor zêdebûna hejariyê li Sûriyê tekez dikin. Nûnerê taybetî yê NY, di warê Mafê Xwarinê de, Olivie Dschoter, piştî serdana Şamê raporek pêşkêşî hikûmet û NY kir û tê de diyar kir ku hejmara birçiyan li Sûriyê dighîje 3 mîlyon kesan ku li gor raporeke Programa Geşepêdanê ya NY, di salên 2003-2004 de hejimara hejar û birçiyan 1 mîlyon kes bû.

### 300 hezar kes ji Cezîrê koçber bûne

Serokê Yekîtiya Niştîmanî ya Azad, Ebdulfetah Dihêr, ku li bajarê Hesekê dimîne ji bo Rûdawê diyar kir ku ji ber rewşa dijwar a navçeya Cezîrê ku piraniya rûniştvanên wê Kurd in û zêdebûna hejmara hejar û birçiyan hejmareke pir zêde koçber bûne: "li gor serjimêriya hikûmetê ya sala 2008'an, hejmara rûniştvanên Parêzgeha Hesekê (Cezîrê) milyon û 200 hezar kes e. Lêkolînên me jî diyar dikin ku ji 2007'an heta îro 300 hezar kes ji Cezîrê koçber bûne û çûne berbi Şam, Heleb, Deraa û Humsê. Îro ji milyon û 200 hezar kesan, nêzîkî 900 hezar kesan li Cezîrê maye."

Ebdulfettah Dihêr eşkere kir ku kesên ku koçberî derdora bajarên mezin ên Sûriyê bûne û di konan de dijîn: "ji sedî 95-99 Kurd in." û tekez kir ku rast e bandora xweza û hişkesaliyê jî, ku ev 5 salin Sûriye daye ber xwe li ser zêdebûna hejariyê hebû, lê wiha pêde çû: "di 2007'an de, Civata Wezîrên Sûriyê biryar da hevkariya parêzgehên rojhilatê Sûriyê: Heseke (Kurd) Reqa û Dêrezorê (Ereb) bike. Civatê plan danî ku 12 milyar lîreyên Sûrî bike bingeh û navçeyê bi wan vejîne. Ji van 12 milyaran, ji sedî 84 çû ji bo Dêrezorê, ji sedî 13 Reqayê bir û ji sedî 7 parêzgeha Hesekê stand. Ew jî bi mebesta berfirehkirina firokexaneya bajarê Qamişlo û kirina wê ji bo firokexaneyeke navnetewî." Dihêr wiha domand: "ti jêrxaneya aborî ya hikûmetê li navçeyê tune. Hejmara kargehan li Cezîrê li ser tiliyên dest tên hejmartin. Kargeha Tevnê li Hesekê heye, nêzîkî 500 karkeran tê de kar dikin ku ji wan 70-80 Kurd in, herwiha Kargeha Paqijkirina Pembû heye ku nêzîkî 250 karkeran lê kar dikin, lê tenê hemmal Kurd in ku karê wan demkî ye, lê dibe kêmî 20 Kurdan di rêvebiriyê de hebin."

Ev nêzîkî 5 salan dibe li Sûriyê hişkî bûye sedema ku wek berê çandinî nikaribe di vejandina Sûriyê de rola xwe bilîze, bi taybetî ji bo Kurdan. Herêmên Kurdî li Rojavayê Kurdistanê dahata wan li ser çandiniyê ye, nebûna baranê jî, derbeyeke mezin li jiyana wan a aborî xist.

Berpirsê Saziya MAF a Mafên Mirovan li Sûriyê, Brahîm Yûsiv, got şerê hikûmetê dijî Kurdan ji şerê siruştê tundtir eî: "rast e ev nêzîkî 5 sala ye, li navçeya rojhilatê Sûriyê hişkesalî heye, lê gelo ev hişkayî û zuhayî ji ber çi çê bûne? ji ber xemsariya hikûmetê ku proje li wir cîbicînekirine an jî bi awayekî kêm tên bicîhkirin." Yûsiv wiha dirêjî da axaftina xwe: "biryara hikûmetê ya hejmar (49) jiyana aborî û avedankirinê li Cezîrê felc kir, êdî kes nikare xanî û avahiyan bikre û ava bike, loma ji ber hewaya xerab jî xelk li erdê man. Ti çare li ber wan nema ji bilî koçberiyê. Hikûmet û planên wê yên xerab berpirsiyarê yekem û dawî yê vê rewşa hanî ye."

### “Mirov û civaka Kurd li Sûriyê di metirsiyek mezin de ne”

Ebdulfettah Dihêr ji bo Rûdawê ron dike ku li himber vê rewşê, tevgera Kurdî ya siyasî nikare tiştekî bike: "Yekîtiya Niştimanî ya Azad û tevgera Kurdî bi giştî tenê rexneyan li tevgera hikûmetê ligel navçeyê, digrin. Lê rêxistineke civakî îro ji me re pêwîst e. Divê maldar û dewlemendên Kurd ku piraniya wan pere û sermaya xwe li Şam û Helebê dixin kar, li Cezîrê û Hesekê perên xwe têxin kar. Divê tevgera Kurdî sermaya Kurdan dehif bide ku projeyan li navçeyê çê bike, ji ber ku hikûmet tiştekî nake, yanî em bihêlin ku civaka me hinekî bikare rahêje xwe. Weke din tevger nikare tiştekî bike. Li gor min, pêwîste tevgera Kurdî bala xwe bide civakê û di warê aborî de nerînek hevbeş bê danîn."

Brahîm Yûsiv jî daxwaz ji hikûmetê dike, êdî navçeyên Kurdnişîn paşguh nexe tevî ku hêviya xelkê navçeyê ji mêj ve ji hikûmetê hatiye birrîn: "ger hikûmet proje, jêrxaneya aborî û kargehên cûr bi cûr li Cezîrê dirust neke û rewş bi xwezayê tenê ve girêdayî be, dibe ku ev rewşa hanî berdewam bike û jiyana Kurdan (ku berê jî ne ewqasî baş û rêkûpêk e) di hemû warekî de têk bide. Hejarî dibe sedemê koçberiyê, koçberî jî dibe sedemê derketina hejmareke zêde ya pirsgirêkên exlaqî û civakî. Loma dikarim bêjim mirovê Kurd û civata Kurd li Sûriyê ligel metirsiyeke mezin re rûbirû ne."

**Ahmet Dere**

## Ziman û Maf

Ziman parçeyeke kesayetiya mirov e. Beriya ku zarok bê ser rûyê erdê, ew di zikê dayika xwe de guhdarî zimanê wê dike, lewre tê gotin “Zimanê Zikmakî”. Gotinên ku zarok di destpêkê de fêr dibin û dibêjin, ew hevokên ku dayik ji wan re bilêv dikin in. Bikaranîna zimanê dayikê, ji bo herkes û li her deverê, mafekî herî xwezayî ye.

Guneh an jî xêr zimanan nas nakin. Axaftina bi ti zimanî nikare bibe sedemê gunehan an jî xêran. Kesê ku bixwaze gunehan bike, ew dikare di her zimanî de bike. Li vê derê mijar zimanê kurdî, erebî, tirkî, fransizî an jî zimanekî din nîne, lê ji bo Kurdan ev rastî cuda ye. Heta demekê berê jî, li welatekî weke Tirkiye, çawa ku azadiya raman tine, herwiha bikaranîna zimanê kurdî û rastiya wî jî tawan dihate dîtin (di aliyekê de hê jî wusa ye). Di dema Seddam Huseyn de jî, li Îraqê heman zext hebû, îro li Îran û li Sûriye jî xebatên ji bo pêşxistina kurdî têne astengkirin.

Heta niha gelê Kurd ti xebateke giranbiha ji bo pêşxistina zimanê xwe nemeşandiye, lê ev pêwîstiyeke mezin e. Ji bo bersivdayîna vê pêwîstiyê divê hewldanên ferdî ên bi cewher hebin. Di meşandina hewldanên ji bo pêşxistina zimanê kurdî de, rola sereke dikeve ser milên derdorên rewşenbîr, ên ku ji xwe re dibêjin “zimanzan”. Lewre divê ev derdor bikaribin rola xwe baştir bileyzin. Li ku dera Kurdistanê, an jî li ku dera cîhanê dibe bila bibe, bi taybetî divê rewşenbîrên Kurd di warê pêşxistina ziman de zêdetir xwe di bin bar de bibînin. Heta roja îro hin hewldan ji aliyê heman derdoran ve çêbûne û helwestekî erênî jî derketiye holê, lê ev ne bes e.

Pêşxistina kurdî, bi çi zaravî dibe bila bibe, tenê di warê ziman de bi sînor namîne. Ew di heman demê de xwedî wateyeke siyasî, çandî û moral e jî. Lewma, divê her Kurd zimanê xwe, kurmancî, soranî, zazakî û goranî, weke mafekî xwezayî, hîn bibe, bide fêrkirin û biaxive. Li dijî raberkirina nêzîkatiyên piçûkxistina zimanê kurdî, bi taybetî ya ji aliyê rayedarên dewletên dagirker ve tê meşandin, divê ku her Kurd bi hewldanekî taybet li zimanê xwe xwedî derkeve, di her qadên jiyanê de kurdî bikar bîne.

Ez li dijî bikaranîna ti zimanan nînim. Eger ji bo me pêşxistina ziman pir pir pêwîst nebûya, ez wisa nêzîk nedibûm. Bikaranîna zimanê kurdî dikare bandorê li ser hemû jiyana Kurdan çê bike. Lewre ez pêwîst dibînim ku hemû Kurd, ji derveyî zimanê xwe, ti zimanekî din di jiyana rojane de bikar neynin. Ev nayê wateya ku em qet erebî, farsî û tirkî bikar neynin, lê dema ku di jiyana rojane de, bi taybetî di nava xwe de, di nava karûbarê malbatê de, zimanekî biyanî bigirin pêş, ev dibe xeteriyeke mezin.

Divê bê zanîn ku di têkoşînê de rêbazekê herî bibandor jî bikaranîna ziman e. Hemû xebatên ji bo pêşxistina zimanê kurdî dikarin di çarçoveya têkoşînê de bên dîtin.

Serokê Komela Dostaniya Îsraîl-Kurd, Dr. Mordechaî Zaken:

# Divê têkiliyên Kurdan û Îsraîlê xurt bin

**Berlîn (Rûdaw) –** Serokê Komela Dostaniya Îsraîl-Kurd Dr. Mordechaî Zaken hefta borî li paytexta Almanya Berlînê tevlî semînerek bû û di derbarê tekiliyên Kurd û Cihûyan de axivî. Dr. Zaken got, "Divê ji vir şûn û de tekiliyên Kurdan û Îsraîlê bêtir xurt bibin."

Semînera bi navê "Berlîn, Kurd û Cihû li Rojhilata Navîn" bi alîkarîya "Komeleya Gelên Di Bin Tehdîdê De" û parlamenterê Alman ê esil Kurd Giyasettin Sayan hefta borî li avahiya Parlamentoya Berlînê hat li darxistin. Di semînerê de gelek Kurd jî amade bûn. Nivîskar û Serokê Komeleya Dostaniya Îsraîl - Kurd, Mordechaî Zaken, li vir axivî û behsa Cihûyên li Kurdistanê kir. Zakenê lêkolînvan û nivîskar, di axaftina xwe de behsa dîroka malbata xwe jî kir: "Bavê min ji bajarê Zaxoyê ye. Pîrika min jî ji Nisêbînê ye. Ez bi xwe li Îsraîlê ji dayîk bûme û xwediyê malbateke Kurdistanî me. Cihû, ji vir 2000 sal berê hatine Kurdistanê. Lê gava Dewleta Îsraîlê ava bû, ew vegeriyan welatê xwe. Ew bi salan li Kurdistanê di nav aştî û wekheviyê de jiyan. Ew ji xwe wek Cihûyên Kurdistanê tên hesibandin.



Kazim Baba, Dr. Kemal Sîdo û Giyasettin Sayin jî ligel Dr. Zaken tevlî semînerê bûn

Îro jî gelek wan li Îsraîlê bi çand û hunera xwe dijîn."

### 'Cîhan komkujiya hemberî Kurdan nabîne'

Mordechaî Zekan, di semînerê de behsa rewşa Kurdan a li Rojhilata navîn jî kir û wiha axivî: "Kurd li cîhanê 40 milyon kes in. Lê xwediyê dewletek nîn in. Cîhan û raya giştiya navnetewî neheqiyeke mezin li Kurdan dikin. Li aliyê din ji bo 5-6 milyon Filistînî cîhan hertim di nava helwestan de ye. 22 dewletên Ereban hene. Filistînî jî Ereb in û piştgiriya wan dewleta dikin, lê welatê Kurdan ji aliyê van dewletan ve hatiye dagîrkirin. Divê raya giştî ya navnetewî vê nakokiyê baş bizanibe. Filistîniyan, operasyonên leşkerî yên hemberî wan gelek baş, bi kar anîn û li seranserî cîhanê ji xwe re lobiyeke bi bandor avakirin. Kurd di dîrokê de û herwiha îro, gelek komkujiyan dîtiye û dibîne, lê raya giştî ya cîhanê ti carî nexast derdê wan guhdar bike û têke rojeva xwe." Zekan daxuyand ku, Kurd ji bidestxistina çand û mafên wek zimanê xwe razî ne, lê Filistînî ligel tiştên zêde jî dixwazin tekoşîna wan li cîhanê alîkarî dibîne. Zekan wiha axivî: "Kurd jî di bin zordariyê de ne û gelek gundên wan hatine valakirin û bi hezaran Kurd îro li derveyî welat wek sirgûn dijîn." Zaken bibîrxist ku jiber wî di derbarê Kurdan de gotaran nivîsandiye ji aliyê çapemeniya Tirk ve wek ajanê MOSSAD'ê hatiye danasîn. Li gor Mordechaî Zaken, azadiya Kurdan wiha pêk tê: "Kurd divê bibin yek û li dijî wan dewletan tekoşînek giştî bidin." Zaken, anî ziman ku pêdiviya Kurdan bi lobiyeke navnetewî heye ku bi yekîtiyê ve girêdaye."

### 'Kurd divê rêberek nû derxin'

Zaken wiha berdewam kir, "Kurd divê îro di nav xwe de rêberek hilbijêrin. Navêk nû ku her kes wî qebûl bike. Ev bi xwe re netewîbûne û wekheviyê jî tine û di qada navnetewî de dibe xwediyê lobîyek mezin. Li gor min wê gavê pirsgirêka Kurd bi hêsan bê çareserkirin." Zaken, axaftina xwe bi van gotinan bi dawî anî: "Berî her tiştî Kurd divê li welatê xwe jî li derveyî welat jî bi hevre yek bin û li dijî dijminên xwe tekoşîn bidin. Bi tekoşîna xwe ya mafdar gelên wan welatan jî bi kişînin aliyê xwe. Divê netirsin, bi Îsraîlê re têkiliyên baş û germ deynin. Çima Tirk û dewletên Ereb vêya dikin û Kurd nekin? Gava ew dikin diplomasiya navnetewî ye, lê gava Kurd bikin ev dibe şeytanî. Propagandayên wisa dikin. Divê Kurd guh nedin van tiştan û ji bo berjewendiyên xwe tekilîyên wisa çêkin."

Keça Alman Maria Muller:

# "Bi rêya zimanê tirkî min fahm kir ku Amed çiqas bindest e!"

"Berî ez biçim Amedê min pirtûka Karl May 'Durchs wilde Kurdistan' xwend. Di înternetê de jî min li ser Kurdan gelek agahî wergirtin, lê weke ez hatibim bajarekî Tirk, li wir rastî zimanê tirkî hatim."

**Robîn Botî** Berlîn

Maria Mûller keçeke Alman a 28 salî ye. Ev heşt sal bêtir e ku bi Rojhilat re mijûl e. Her sal diçe welatekî Rojhilat. Par çûbû Misrê îsal jî bi hevalê xwe re berê xwe daye Kurdistanê. Hevalên wê tatîla xwe li ber behrên mezin derbas kirine, lê wê xwestiye ku vê havînê Kurdistanê li cihê cih nas bike. Ji Berlînê berê xwe daye Stenbolê, ji wir jî ber bi Amedê ve çûye. Bi qasî hefteyekê li Amed û derdorên wê geriyaye.

Em ji keçika Alman Maria dipirsin ka wê Amedê çawa dîtiye, dibêje: "Pir germ bû, pir" û wiha berdewam dike. "Bircên Amedê ez kirim evîndarê xwe. Eger ew birc li welatekî Ewrûpayê bûna wê her sal bi milyonan turîst bikişanda ser xwe, lê mixabin şer û feqîrî û xirecira wir rê nade ku navê Amedê bikeve ser zimanê turîstan."

Paşî lê zêde dike ku ew ne li bendê bû ku li wir hema bêje her kes bi tirkî bipeyîve, "Berî ku ez biçim wir, min 'Durchs wilde Kurdistan' a Karl May jî xwendibû. Di înternetê de jî min li ser Kurdan gelek agahî wergirtin, lê weke ku ez hatibim bajarekî Tirk li rastî zimanê tirkî hatim. Ez kurdî û tirkî nizanim, lê berî wê min xwe fêrî rojbaş û spasê kiribû. Di dema kirîn û firotinê de min xwest ku ez van her du gotinên xwe bi kar bînim, bi rêya zimanê tirkî min fêm kir ku bindestiya wir çiqas kûr e."

### "Azadiya min di destê min de ye"

Maria bixwe hostaya zîv û zêr û bazinan e. Ew her çeşît zîv, gustîlk û guhar û bazinan çêdike û di bazar û festîvalan de difroşe. Ji karê xwe zêde ne memnûn e, zêde pere pê ve nayên, "Lê azadiya min di destê min de dimîne. Bi vî karî ez diçim gelek bajarên wekî Barcelona, Parîs û derên din. Hem heqê nanê min jê dertê, hem jî ez ji xwe re digerim, dinyayên nû nas dikim, însanên nû dinasim."



Maria bi xwe gustîlk, guhar û bazinan çêdike û difiroşe

Em dîsa vegerin ser gera wê ya li Amedê. Mûller dibêje zarokên hejar pir bala wê kişandine, "Divê Kurd li Ewrûpayê kampanyayên mezin çêkin û ji bo van zarokên hejar îmkanan peyda bikin. Dilê min şewitî. Dahatûya van zarokan tune. Tu dizanî ku mirov li Almanyayê zêde zarok li kolanan nabîne, dema min ew çend zarok bi hev re li kolanên Amedê dît, kêfa min bêtir li jiyanê vebû, lê mixabin ew zarok pêdiviya wan bi xwendin û dahatûyeke saxlem heye."

Em jê dipirsin ka bi çavê Ewrûpiyekê wê li wir meseleya Kurd çawa dîtiye: "Bi ya min bi kêmanî divê heqê Kurdan ê otonom hebe. Di vê sedsalê de êdî kes behsa mafê ziman û çand nake, mirov bi van mafan re tê dinyayê, ev maf li hemû welatên Ewrûpayê di bin garantiya dewletê de ne. Lewma divê Dewleta Tirk berê xwe bide Ewrûpayê û ji vir modelekê ji bo çareseriyê bibijêre. Helbet divê Kurd jî bi metodên modern xwe bidine naskirin û ji bo vê yekê pişta hev bigirin."

### "Kurd dikarin li ser înternetê ji xwe re Kurdistanekê ava bikin"

Dû re gazinc dike ku hêj malpereke Kurdan a berfireh tune ku Kurdan bi çend zimanan li Ewrûpiyan bide naskirin, "Di vê serdemê de her kes li ser înternetê ye, lê Kurd hema bêje tê de tunene, ji bo gera xwe min xwest çend agahiyan wergirim, lê ez rastî çavkaniyên xurt nehatim, divê Kurd van kêmasiyan temam bikin. Înternet gelek giring e, qet nebe Kurd dikarin li ser înternetê ji xwe re Kurdistanekê ava bikin. Bi gazinc û giliyan çare nabe."

Hevserokê BDP'ê Demirtaş pêvajoya dawî nirxand:

# Kî pirsgirêka Kurd çareser bike, wê îdeolojiya fermî jî tasfiye bike



Ligel hinek şikestin û rawestanan, "rêlêvekirina" ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd didome. Dewlet û hikûmet ji aliyekî ve bi Abdullah Ocalan û BDP'ê re danûstandinan çêdikin, ji aliyekî din ve bi rayedarên Îran, Îraq û Sûriyê re dikeve nav têkiliyan. Ev têkiliyên bi van dewletan re BDP'ê, Qendîlê û Ocalan aciz kirine. Ev hersê aktor jî van hewldanan wek tasfiyekirina tevgerê binav dikin. Hevserokê BDP'ê Selahattin Demirtaş derbarê pêvajoya çareseriyê, naveroka hevdîtinan û rewşa dawî ji Amed Demir re axifî.

**Rûdaw: Ji bilî rayedarên li ser desthilatê yên wek Wezîrê Dadê Sadullah Ergin, Cîhgirê Serokwezîr ti hevdîtinên we bi kesî re çêbûn? Derbarê têkiliyên ku bi Ocalan û PKK'ê re dibin gelo ti agahdariyên we hene?**

**Selahattin Demirtaş:** Ji bilî wan hevdîtinan ku raya giştî jê agahdar e, ti têkiliyên me yên fermî û ne fermî çênebûn. Hin agahdarî hene ku rayedarên dewletê bi Ocalan re hevdîtinan çêdikin. Kî diçe Îmraliyê? Li wir çi tên axaftin? Em jî derbarê wan de tiştek nizanin.

**Eger ti agahdariyên partiya we - ku siyaseta wê ya bingehîn pirsgirêka Kurd e - tune be, gelo ev ji bo we ne puanên kêmasî ne?**

Dewlet bi Ocalan re û bi Qendîlê re çawa û çi diaxife û çi tên kirin, zanebûna wê ne karê me ye. Ya girîng ew e ku ji van danûstandinan gelo wê ji bo çareseriyê tiştek derkeve yan na? Em li benda encaman in. Em pir ji xwe re nakin pirsgirêk ku hikûmet derbarê danûstandinan de me agahdar bike yan neke.

**Wê ji hevdîtinan gelo ti encamek derkeve?**

Nizanim. Ji hevdîtinên dawî tiştek balkêş û girîng ku mirov jê hêvî bike, tune. Di raya giştî de ew şik û guman hene ku kesên van têkiliyan li pişt deriyên girtî dimeşînin, xwediyê armancek din in.

**We ji bo çareseriyê carnan Îmralî û carnan jî Qendîl wek navnîşan nîşan da. Hûn piştî referendûmê dibêjin ku 'muxatabê rastî em in'!**

Em cara yekem vê nabêjin. Ji bo ku me wisa got, me bi hikûmetê re hevdîtin çêkirin. Eger Tirkiye bixwaze vê pirsgirêkê çareser bike, divê bi me re biaxife.

Ez bi zimanekî vekirî dibêjim: Em muxatab in! Lê nikarin hemû pirsgirêkan bi me re çareser bikin.

**Mînak, hikûmet dikare bi BDP'ê re çi biaxife?**

Hikûmet dikare bi me re li ser mijarên wek makezagoneke demokratîk, guherandinên ku wê di makezagonê de bên kirin, derbarê çareseriya pirsgirêkên Kurdan ên ku bi makezagonê û yasayan ve girêdayî ne, bi kîjan gavên pratîk aştî pêk tê, biaxife. Em di her platforman de dibêjin ku ji bo têkiliyan û çareseriyê deriyê me vekirî ye. Lê dema ku dilê hikûmetê nexwaze, deriyên xwe digire.

**Kuştiyên ku kujerên wan ne diyar in, ji dewletê tê pirsîn. Lê kiryarên PKK'ê? Demirtaş di vê mijarê de zelal diaxife: "Wê sûcên PKK'ê jî bên nîqaşkirin. Wê tiştek veşartî nemîne."**

**Gelo bandor û hêza we çiqas e? Encamên ku ji danûstandin bi we re derkevin holê, wê Ocalan û Qendîl bêjin erê?**

Bandora BDP'ê heta cihekî ye. Di danûstandinên ku em bikin de, em nikarin li ser dahatûya Îmraliyê û bêçekkirina Qendîlê biryar bidin. Lê em dikarin rêyek vekin. Eger hikûmet helwesteke erênî nîşan bide û di amadekirina makezagoneke nû de hêviyên BDP'ê ji bigre ber çavan, wê ev gav hêzeke xurt bide têkiliyên bi PKK û Ocalan re tên kirin. BDP nikare talîmat bide PKK'e ji bo çekberdanê. PKK jî nikare talîmat bide BDP'ê. Lê bi rêyên îndîrekt herdu aktor jî bandor li ser hevdu dikin.

**Gelo di makezagonê de guhertinên çawa bên kirin, BDP, Ocalan û Qendîl wê pê razî bibin?**

Ji bo makezagoneke nû hikûmet divê bingeh û atmosferê amade bike. Lê niha tiştek wisa nake. Li Tirkiyê azadiya ramanê, ya guftûgokirinê û ya rêkxistinê tune. Bendava hilbijartinê bê edaletî ye. Di demên dawî de ji bo min 20 meh cezayê girtîgehê birîn. Ji bo 20 parlamenterên grûba me bi tevahî 2 hezar û 500 sal cezayê girtîgehê tê xwestin. Serokên bajêr yên partiya me yên ku ceza nestandiye û nehatiye dadkirin, tune. Em di nava rewşeke wiha de çawa dikarin xwestekên xwe bînin ziman û biaxifin? Astenga herî mezin ku li hemberî siyaseta me çikandine, wernegirtina alîkariya ji xezînê ye. Partiyên din hemû ji dewletê alîkarî distînin û siyasetê dikin, lê em ji ber axaftinên xwe hertim cezayê bi pere didin dewletê.

**Gelo Qendîl û Îmralî wê ji daxwaziyên BDP'ê razî bin?**

PKK ji van pêşniyazan re nabêje na. Herwiha Îmralî jî.

**Hevdîtinên di navbera AKP û BDP'ê û Ocalan û Tuglukê de hatin kirin û piştî wan ku biryara bêçalakiyê hat ragihandin, gelo hêz da siyaseta rêvekirinê?**

Projeya ku AKP'ê di serî de çi gotibe, hê jî didome. Me ji wê re negot "rêvekirin" û em nabêjin jî. Ji ber ku çareseriya pirsgirêka Kurd û tasfiyekirina îdeolojiya fermî yek e. Ango kesî ku bixwaze pirsgirêka Kurd çareser bike, divê îdeolojiya fermî ji holê rake. Ji bo mirov fahm bike, ka hikûmetek dixwaze pirsgirêka Kurdan, Elewiyan û ya turbanê - ku îdeolojiya fermî dijbertiya vana dike - çareser bike, divê mirov li helwesta wê hikûmetê binêre, ka gelo li himberê îdeolojiya fermî çi dike, çawa radiweste? Ji ber ku îdeolojiya fermî dibêje yek ziman, yek netew, yek al. Eger hûn baş lê binêrin, hûn ê bibînin ku ev xal xalên sor ên AKP'ê ne jî. Ne Kurd, ne Elewî, ne jî jinên sergirtî dikarin bi îdeolojiya fermî re bijîn. Ji ber ku hebûna yekê bi tunebûna yekê ve girêda ye.

**Ma qet ti tişt nehat kirin?**

Hin tişt hatin kirin, lê ji bo çareseriya pirsgirêka Kurd na. Divê mirov di vê mijarê de adîl be. Divê mirov ne her tiştî bi AKP'ê ve girêbide û ne jî mafê wan bixwe. Dinya jî, Tirkiye jî tên guhertin. Li Tirkiyê têkoşîneke demdirêj ya demokrasiyê heye. Gelek kesên çepgir, yên muhafazakar, demokrat, rewşenbîrên lîberal, nivîskarên hişyar hene di vê têkoşînê de. Li Tirkiyê girseyekî gel heye ku stûyê xwe ji derbeyên leşkerî re xwar nekiriye. Gelek heye ku ev 80 sal in zimanê wî ji holê nehatiye rakirin, çanda xwe zindî hiştiye, tekoşîna ji bo mafên xwe heta îro domandiye. Li gel hemû zextan girseyekî gel heye ku baweriya xwe wenda nekiriye, girseyeke din heye ku serê xwe heta îro nixaftiye. Ango, li meydanê zarokek ku digirî heye û AKP jî di destê wê de bîberon heye û digere. Ev zaroka ku digirî, Kurd in, Elewî ne û kesên bawermend in. Divê AKP vê tabloyê baş bibîne.

**Dema ku behsa hilweşandina rêxistinê tê kirin, Kurd xwe aciz dikin. Dema ku behsa hilweşandina îdeolojiya fermî jî dibe hinek kesên din aciz dibin. Çima wiha dibe?**

Di vir de du tiştên girîng hene. Yek jiholêrakirina şer û tûndîtiyê ye, ya din jî jiholêrakirina rêxistinê ye. Rast e, divê şer ji holê bê rakirin. Lê ji holêrakirina rêxistinê tiştek e din e. Rêxistin tenê ne ji grûbeke ku li Qendîlê ye, pêk tê. Rêxistin gelê li Colemêrgê, Amedê, Sêrtê, Wanê, Batmanê, Stenbolê û li gelek bajarên din e. Dema behsa jiholêrakirina rêxistinê tê kirin, tê wê wateyê ku ev hemû kes ji holê bên rakirin. Hikûmet jî ji xwe ne ji bo çareseriyê, ji bo tunekirinê dixebite.

**Wê çareseriyeke bê hilweşandin çawa bibe?**

Ji hevdîtinên sergirtî ku bi Îran, Sûriye Îraqê re tên kirin, ti encam dernakevin. Berdin bila Şam derbarê pêşeroja Kurdên Sûriyê de biaxife; ev ne karê Tirkiyê ye. Derdê Tirkiyê ne Kurd in, hilweşandina PKK'ê ye. AKP di şûna ku li van welatan digere û enerjiya xwe xerc dike, dikare enerjiya xwe li Enqerê xerc bike û pirsgirêkê çareser bike. Ji ber ku çareserî sedî sed li hundir e. Eger gavên demokratîk yên ku pediviya me pê hene, bên avêtin, wê şer bi xwe ji holê bê rakirin.

**İsmail Beşikçi dibêje ku "Hesabê kuştiyên kujerê wan ne diyar in ji dewletê tê xwestin û lêpirsîn, lê ti kes derbarê sûcên PKK'ê de deng nake." Wê kengê sûcên rêxistênê bên guftûgokirin?**

Sûcên ku PKK'ê kiriye, çi di nava rêxistinê de, çi li derveyê rêxistinê, divê hemû jê bên pirsîn û şopandin. Ev bûyer veşartî namînin û wê nemînin. Ji bo van karan divê Komîsyona Lêkolîna Rastiyan bê damezirandin. Mafê Beşikçi heye ku vê rexneyê bike. Ji ber ku ew rewşenbîrekî bi namûs û giran e û gelek zehmetî kişandiye. Di nava Kurdan de jî siyasetmedar û rewşenbîrên ku bê tirs vê mijarê bînin ziman hene.

**Li ser serokên şaredaran komîser hebin, ango ji bo kontrolkirina wan PKK hinek kesan wek berpirsiyar bişîne, gelo di siyaseta sivîl de ne tiştek ecêb e?**

**Ji bo 20 parlamenterên DTP'ê bi tevahî 2 hezar û 500 sal cezayê girtîgehê tê xwestin."**

Divê ji wan re komîser neyê gotin, ew kes di komisyonên rêveberiyên me yên herêmî de cîh digrin. Ev komîsyon hîn jî aktîf in. Me li şûna hevalên girtî hevalên nû hilbijart. Rast e, li ser serokên şaredaran e, lê ne li ser îradeya gel in. Karê wan şopandina xizmetê ye, astengkirina têkiliyên rantê ye, destnîşankirina siyaseteke rast e û xurtkirina têkiliyên bi gel re ye. Di nava hemû partiyan de mekanîzmayên wiha yên kontrolkirinê hene.

**Hûn modela cîranê xwe, Îraq a federal, çawa dibînin?**

Ez gelek baş dibînim. Kurd li welatên xwe bûne xwediyê desthilatdariya xwe. Lê dibe ku ev model rasterast ji bo Tirkiyê neyê pêkanîn. Lê ya girîng ew e ku di dawiyê de li Rojhilata Navîn Kurd weke netewek hatin naskirin. Lê hîn gelek kêmasî hene. Divê hîn xurtir bibe.

Bavê Meymûnan, Ezîz Askaryan:

# Ez li Ewrûpa 1’emîn im û yê 2’emîn jî tune ye

Ezîz Askaryan di 1954’an de li paytexta Gurcistanê, Tîflîsê hatiye dinê. Malbata wî weke hemû Kurdên Êzîdî ji zilma Osmaniyan koçberî Ermenistanê bûne û dûre li Tiflîsê bicîh dibin. Ezîz tevî 3 xûşkên xwe li Tîflîsê mezin bûye û xwendiye. Di dema Yekîtiya Sovyetê de navê ”Hunermendê Gel” radeya herî bilind bû, Ezîz jî ev nav standiye. Niha jî di asta herî bilind de hunermendê Federasyona Rûsyayê ye, Ew 40 salin di sîrka herî mezin a cîhanê de çalakiyan bi navê Nîkûlîn amade dike. Ezîz qet neçûye Kurdistanê, lê hêvî dike ku rojekê li Kurdistanê jî çalakiyên xwe pêşkeş bike.

**Ezîz dostaniya te ya bi giyaneweran re çawa destpêkir?**

Ez 8 salî bûm li Tîflîsê diçûm dibistanê. Ji baxçeyê giyaneweran 2 jin hatin dibistana me û pêşniyar kirin ku em bi wan re biçin kursê. Paşî em 43 zarok çûn, lê gişt çûn tenê ez heta dawiyê mam û hîn jî mijûl im. Di baxçeyê giyaneweran de min giyanewer naskirin. Hezkirina giyaneweran bû bengîniya jiyana min. Min nedixwest ji baxçeyê herim malê. Wusa bû ku min nedikarî bêyî giyaneweran bimînim. Lewma min destpêkir li mal jî giyanewer xwedî kirin. Şêr, Rovî, Hirç, Mar, Kûçik, Çûçik, Dîk û Pisîkên min hebûn. Mala me du ode bûn di mal de jî 11 kes dijiyan.

**Tu niha di Sîrka duyemîn a cîhanê de Şovmenê mezinî. Çawa gihîştî vê astê?**

Ez dema tiştekî dixwazim heta bighêjim armanca xwe îsrar dikim. Min tiştek tenê dixwest; di asta dewletê de bibim şowmen. Ji bo vê yekê min dibistana xwe serkeftî xelas kir. Paşî çûm dibistana Palyaço ya Tîflîsê. Dûre jî min 5 sala derhêneriya sîrkê xwend. Di 1975’an de hewldanên min di çapemeniyê de cîh girtin. Min zanîbû di cîhanê de sîrka herî mezin a duyem li Moskovayê û artîstê mezin jî Nîkûlîne. Min dixwest herim wir. Min ji Nîkûlîn re nameyek nivîsand. Wî jî bersiva min da. Me ji nêzîk ve hevdu naskir, ji min bawer kir û got; mirovê weke te ji min re pewîstin. Li Sîrka Nîkûlîn bi 6 meymûnan min dest bi şovan kir. 40 salin bi rengekî profesyonel şovên sîrkê amade dikim, lê 20 salin bi 10 meymûna şovên xwe didomînim. Ji vir şûnve jî ezê xebatên xwe tenê bi meymûnan berdewam bikim.



Ezîz Askaryan 20 sal in bi 10 meymûnan şovên xwe didomîn e

**Ji bo amadekirina şovekê çiqas wext pêwîste?**

Carna hinek şovan di rojekê de hîn dibin, carna jî di salekê de. Meymûn wek zarokane. Hinek zarok lidibistanê karin tiştan zû hîn bibin hinek jî dereng hîn dibin. Ev tiştekî normale, lê em her roj provayên xwe dikin. Ji ber ku rojê carekê em şov pêşkêş dikin, rojên bihênvedanan jî 2, carna jî 3 caran em şovan pêşkêş dikin.

**Di dema pêşkeşkirina şovan de pirsgirêkan derdixin? Wê demê tu çi dikî?**

Li ser dikê Meymûn dema ji tiştekî bitirsin hereketê ku ez dixwazim naxwazin dikin. Wê demê ez mecbûr ji temeşevan re dikenim, lê carna li ser dikê hereketên ewqas balkêş dikin ku ez şaş û şoq dibim. Carna jî kêmasiyên gelek ciddî jiyan dibin, lê ez tenê bi ken derbaz dikim.

**Têkiliyên te bi wan re çawane?**

Em hevdu ewqas baş nasdikin ku ez ji wan û ew jî ji min hez dikin. Em bi hevre dilîzin. Ez ji bo wan dibim dayik, bav, bira, heval. Dema ew dilîzin li wa temaşe dikim, carna tevgereke balkêş dibînim li ser dixebitim. Piştre jî di sîrkê de nîşan dikim. Dema ew nexweş dikevin ez hîs dikim. Weke zarokane, germa wan carna heta 39-40 pile bilind dibe. Carna hebên zarokan didim wan. Carna binê xwe şil dikin. Em binê wan weke zarokan girê didin. Ji zarokan re nêzîkbûn çawaye diwê ji meymûna re jî wusa be. Ez dema bê moralim, hîs dikin, tên cem min hemêz dikin. Ji nêrînên çavan hîs dikin bê moraliya min.

**Meymûnên te tenê şova dikin?**

Meymunên min tenê şovên sîrkê nakin. Bi artîstên mezin ên Rûs re di fîlmê bi navê Meymûnê Diaxive, Ez û Giyanewerên Min, Cîhan û Gerdûn û Muzîsyenên Barmen de leyîstin. Hin jî daxwaz berdewam in.

**Raste di Ewrûpayê de tenê tu bi deh Meymûnan şovan amade dikî?**

Min li Amerîka, Latîn Amerîka, Ewrûpa, Fîlîpin, Sîngapûr, Papaî, Çîn, Japonya, Kûba, Taylan û gelek derê din şov pêşkeş kirin. Di parzemîna Ewrûpayê de ez yekemîn im, yê duyemîn tuneye. Bi 10 Meymûna tenê ez şovan amade dikim. Ji Baden Baden a Almanya yê nûnerekî ez vexwandim, ji Amerîkayê jî gazî min kirin. Xwestin ez li wê derê bijîm û şova amade bikim, lê min nexwest. Tenê ji bo şovan ez ê herim û vegerim. Ez ji Rûsyayê ji Moskovayê hez dikim.

**Dikarî behsa bîranînekê bikî?**

Di 1995’an de rojekê cejna bajarê Moskovayê bû. Serkarê min Nîkûlîn ji min re got tu dikarî meymûnekî jî bi xwe re bibî. Min jî yê herî biçûk, Mîkî, cilê wî lêkir û em çûn wir. Li ciyê cejnê şaredarê Moskovayê Lûşkov hat silav da û em bi hevre meşiyan. Piştre Serokdewletê Rûsyayê, Borîs Yeltsîn, rastî me hat. Ji min re got ez dixwazim Mîkî bigrim hemêza xwe. Min jî got keremkin. Mîki hema çû hemêza Yeltsîn ew maç kir û destê xwe da rûyê Yeltasîn, bi tilya xwe makyaja wî hilda. Wê demê cara yekem min dît ku serokekî Rûsyayê rûyê xwe makyaj dike. Vê bûyerê di hemû reklam û avîşan de ciyê xwe girt. Dûre Nîkûlîn hat got ez te pîroz dikim; hunerê te heta rûyê serok dewletê Rûyayê derket.

**Tiştên ku te xeyal dikirin tu gihîştî hemiyan?**

Erê, lê niha xeyal berdewam dikin. Niha ez dixwazim Şempanzeyekî bikirim. Kirîna Şempanze hinekî zehemte, ji ber ku perwerdekirina Şempanze zanabûn û zanistiyeke taybet dixwaze. Ji bo kirîn û perwerdeya Şempanzê diwê destûra Konvansiyona Washington hebe. Min destûr girtiye û ez bûme endamê saziya wan jî. Ya duyem; ez dixwazim di dema pêş de şanoya Meymûnan ava bikim, di nava şovan de dans û folklora gelan jî pêşkeş bikim, herwiha dixwazim govenda kurdî jî di nava şovan de bi cîh bikim.

**Derveyî meymûnan jiyana te çawaye?**

Derveyî hunera min jiyana min a taybet zêde nîne. Ez carekê zewicîm, lê dûre em ji hev qetiyan. Keçeke min bi navê Jaklîn heye. Niha him dixwîne him jî dersên balê digre. Li cem meymûnan ez nikarim ji keça xwe hez bikim, kumreşiyê dikin. Meymûnên min malbata min a duyemîn in. Ez niha pîrtûkekê dinivsînim li ser jiyana xwe. Pîrtoka xwe ez ê bi navê ‘Bavê Meymûna’ amade bikim.

***Hevpeyvîn: Arjîn Yaman***

# Di sê rojan de du zarave

**Berlîn (Rûdaw) –** Li bajarê Almanya Berlînê dawiya vê heftê rewşa du zaraveyên kurdî, kurmacî û zazakî tê nirxandin. Di çarçova 5. Rojên Çanda Kurd li Berlînê de ku ji aliyê KOM-KAR ve tê li darxistin, îsal mijar “Zimanê Kurdî” ye.

Çalakiya bi navê Rojên Çanda Kurd ku her sal ji aliyê KOMKAR e.v ve tê li darxistin îsal di navbera 29-30 û 31’ê Cotmehê de rewşa du zaravayên kurdî, ango kurmancî û zazakî dinirxîne.

Roja yekem û roja dawiyê gutar, axaftin û nirxandin wê li ser zaravê kurmancî bên kirin, roja şemiyê jî mijar “Rewşa Zazakî ya îro û ya pêşerojê” e. Amadekariya nirxandina li ser zaravê zazakî Enstîtûya Ziman û Kultura Kirmancan (Zaza) e.V. dike.

Serokê Enstîtûya Ziman û Kultura Kirmancan (Zaza) e.V. Îsmet Sîverekli daxuyand ku di civînan de wê nûnenerkî UNESCO’yê jî cîhbigre û di derbarê zimanên di bin tehdayê û zimanên li ber windabûyînê de biaxive. Sîverekli got ku taybetmendiya Çalakiya Rojên Çanda Kurd a îsal ew e ku di demeke li ser perwerde û axaftina kurdî de li welat nîqaşên balkêş tên kirin, ew jî mijara ziman tînin rojevê û rewşa zazakî ya li welat û li derveyî welat dinirxînin.




Di civînên roja şemiyê de ku rewşa zazakî ya îro û dahatûyê tê nirxandin, hevkarê Rojnameya me Rûdawê Seyîdxan Kurij wê axaftina xwe li ser xebatên zazakî li Almanya yên ji sala 1980’an û şûnde bike.

Di rûniştina duyemîn de jî Çeko li ser mijara “Xebatên Lêkolînî li ser Kirmanckî (Zazakî) ” biaxife. Civîn paşî bi lîstika teatrê ya zazakî didome û di dawiyê de jî nûnerê UNESCO’yê li ser mafê gelan û rewşa zimanên di bin tehdayê de biaxive.

Civîn roja 29’ê Cotmehê di saet 14:00’an de li navnîşana Werkstatt der Kulturen Wissmannstr. 32, U-Bahn Hermannplatz dest pê dikin û roja 31’ê Cotmehê bi dawî dibin.

# “Di zikê diya xwe de min dest bi wênesaziyê kiriye”

**Şengul Ogur**

Qadên ji hev serbixwe ên hunerê herçendî heta radeyekê hevkariyeke erênî li hev bikin jî, piştî radeyekê êdî li pêşiya hev dibin asteng û her yek dixwaze şopên xwe li ser ê din bihêle. ji bo vê jî ne hêsan e ku hunermendek bikaribe di qadên ji hev serbixwe yên hunerê de berhemên serkeftî bide.

Dema ku em bala xwe didin Fewzî Bîlge em dibînin ku wî bi berhemdariya xwe ya di qadên ji hev serbixwe yên hunerê de lihevhatine, wan pêk aniye û hevkariya wan a li ser hev a neyênî ji holê rakiriye. Fewzî Bîlge wênesazekî Kurde ku heta niha sê hezar wêne li dû xwe hiştine. Digel wênesaziya wî, herwiha ew çîrokvan e û pênc pirtûkên çîrokan li dû xwe hiştine. Ew herwiha peykersaz û helbestvane jî.

Me jê pirsî gelo ew bêtir xwe xwe çîroknivîs, helbestvan, wênesaz yan peykertraş dibîne. Bîlge wekî ku dil nehêle dilê çîrok, helbest û peykerên xwe bişkîne bi kurtepistî dibêje: “ez xwe nêzî wênesaziyê dibînim.” lê wiha lê zêde dike: “A rast her yek ji wan perçeyeke min e, ew min û ez wan diafirîn im. Di wê baweriyê de me vê ya pir ji dil dibêjim.”

Bîlge heta niha ji sihî zêdetir pêşangeh li dar xistine û wî gelek şagirt ên weke; Ehmed Ronîar, (wênesaz, helbestvan, rexnegir) Berçema Muşrîtan, (wênesaz, helbestvan) Jovan Horî (wênesaz) Remezan Îlten (wênesaz, şanoger) Çidem Baran (romannivîs û wênesaz) gihandine.

Bîlge ne di wê baweriyê de ye ku şerezahî tê hîn bûn û ji bo vê jî destpêka wênesaziya xwe ji malzarokê dide destpêkrin û dibêje: “min di zikê diya xwe de dest bi wênesaziyê kiriye.” Huner ji bo xwe ye yan ji bo civakê? Ev pirs gelekî hatiye nîqaşkirin. Dema ku guhê xwe didin Fewzî Bîlge em têdigihin bê wî çi mîsyon li hunerê bar kiriye: “dixwazim hebanoka xwe çê bikim. Dikaribim têkiliyên di navbera civak û mirovan, têkiliyên di navbera jiyan û mirovan û di nava wan têkiliyan de xwe, xwe û civakê; xwe û dunyayê bipeyîtînim û bi alîkariya amûrên hunerê şêwekarî- tevn, xêz, reng û bi forma pêşniyaran bikim û bistînim.”

Kî kê diafrîne û gelo hunermend bi hunera xwe dikare xwe şad bike? Bîlge dibêje: “mirov dikare bêje hunermend bi xwe berhemeke, berê ew xwe, dû re civaka wî, herî dawiyê jî mirovahî wî diafirîne. Ew deyndarê wan e, loma herdem dixwaze wan dilşad bike û ew jî bi wan re dilşad bibe, lê li gor min ew ti car dilşad nabe.”

Gelo wî ya dilê xwe wênekiriye, nivîsiye yan na? Bîlge dibêje: “min hîna wêneyê ku dixwazim neçêkiriye, ne çîrok û helbesta ku dixwazim binivîsînim nivîsandiye, ez ê bigihîjimê yan negihîjimê jî, nizanim.” Lê wî bela xwe bi xwe û bi hunerê daye û hîn li ber xwe dide ku bi serkeve, wêne û peykerên bedewtir, çîrok û helbestên baştir biafirîne.



**Fewzî Bîlge heta niha sê hezar wêne li dû xwe hiştine**



## Hekîm Sefkan

# Reklam



Di vê demê de wek demên berî xwe, reklam tiştan bilind dike, wiha jî dadixe. Ji demeke dirêj de min dixwest ez vê mijarê bigrim destê xwe. Reklam wek hemû beşên hunerê li cem me qels û ne di rêya xwe de ye. Çi devkî, çi nivîskî. Yan jî em wê şaş bikartînin.

Demên berê ku çapemeniya me tunebû, ragihandin heta dereceya tunebûnê kêmbû, dîsa jî bi devkî navûdengê stranbêjekî dikaribû li çarhêlan belav bibe. Ew navdeng, reklam bû, lê ne bizanebûn, ne jî organize kirî bû.

Bêyî em vegerin berê û ne jî serê xwe bi wateya reklamê re gêj bikin, emê di cih de li ser rekalam vê rojê biaxivin.Reklam,him rind,him jî xerab dibe.Eger em herduwan deynin ber hev em kurd di reklama xerab de,dê di rêza yekemîn de cih bigrin.Ji ber ku em bi hesab û zanebûn nêzîkî meselan nabin,li şûna mejî,hestên me diaxivin,loma em karin pir hesan,berhemdarekî,bikin xayin,wan reş bikin û karikaturekî wan derxin ku zarok ji wan bitirsin.Ji xwe ku ew kes bêhna şaşiyan jê bê,ewê ji roja yekê de wendabike.

Ji sedî çend ez nizanim lê piraniya kesên ku pişt re bûne nivîskar, nivîsên wan yan pesnên hêlekêne, yan jî dijminatiya hêleke dine, analîz tune, hemû bûne rexnevan û reklama xerab a rêxistin û kesayetiyên welatparêz dikin. Min got ji sedî çend ez nizanim, lê hûn karin li malper û rojnameyan binerên, di malperekê de çend rexnevan hene, çend lêkolîvan hene, yan jî çend analîz hene, hûnê bi xwe prosenta bidin bê ji sedî çend nivîskarên me, rexnevanin. Mixabin ji rexnê bêtir, reklama bi xerabiye ku bi xwe antipropagandaye.

Di her hêlê de em wehane, lê ezê hêla hunerî bigrim destê xwe. Organiztoreke kurd, berî çend rojan gazinên xwe weha dikirin; dema em dibêjin emê vê hunermenda jin ji we re bişînin, ew dibêjin ew kiye, nayê naskirin. Sedî sed raste, lê her kesê ku vê rojê tê naskirin, pêşî nedihat naskirin.

Min çi jê re got, ez niha jî dibêjim, karê Firme û organizasyonan jî ewe ku hunermendên xwe bidin naskirin, naskirin jî bi reklaman çêdibe, reklam, afîşin, durişmeyên li ser afîşan in, rengê wan in. Çapemenî, hevpeyvînin. Weha tê xwestin ku heta tu karibî, pereyan ji ser pişta wan derxînî, divê tu pêşî pereyan li ser xercbikî yanî pêwsît be tê bi rojnamevanekî re rûnê, nan bidê, bê xwestin tama devî wî xweşbikî, ta ku ew jî hemberî wê, hunermendên te bilind bike. Reklam pêşî dixwe, pişt re dide.

Heta niha nivîsên li ser afîş û plakatên Kurdan, ti carî ne bûye reklama hunermend. Heta niha sernivîsa hevpeyvînekê nebûye pesnê hunermendan. Albûmeke derdikeve, bi peyva DERKET têr dibînin, ku pir xwe biêşînin wê peyva DENGÊ XWEŞ lê zêde bikin. Hûn ji min bipirsin, guneh ên rêxistinên siyasîne; Em reklama wan bikin wê çar rojên din herin cihekî din, lê ya rast ji ber ku reklama wan nabe ew diçin cihekî din. Weha hunemendek nûhatî dibe qurbana metirsîn û xeyalên siyasetvanan.

Me kesek- du girtine û her em pesnên wan didin, heyran ew nema êdî muhtacê reklama me ne, kesên ku cihên xwe digrin kodeke wan çê dibe û hew. Wek, bilbilê xemgîn, stêra rojhilat, kralê popê û her wekî din. Ez nikarim û destûra min tune ku ez bêjim bila reklam weha bibin, lê ez karim vê bêjim, Reklama Kurdan tune, ku hûn bêjin vaye, ezê bêjim ew qels û bêwate ye, reklam ne weha ye.

# Gurgo behsa çîroka zarokên Îbrahîm dike

**Stockholm (Rûdaw)-** Hunermendê naskirî yê Kurdistanî-Swêdî, Kemal Gurgo, ji Rûdawê re aşkere kir ew niha li ser senariyoya filmekê bi navê zarokên Îbrahîm dixebit e.

Derbarê çîroka film Gurgo got: "ez behsa zarokên Îbrahîm pêxember dikim ku Kurd in û dixwazim nîşanî Swêdiyan bidim ku çi hat serê wan." Gurgo ji bo yekemîn car di sala 1985’an de li ser ekrana sînemaya Swêdê derket û piştre di çendîn fîlmên televizyonî yên wî welatî de lîstiye, lê wî li hemû cihekî xwe wek sînemakarekî Kurd daye nasîn. Derbarê fîlma xwe ya nû jî ragihand: "ez di dawiya film de dibêjime temaşevanan ez zarokê Îbrahîm û Kurd im."

Navborî giring dizane ku temaşevanên Swêdî û Ewrûpî bi rêya çîrokên wî, gelê Kurd nas bikin. Gurgo eşkere dike: "dema tu ji bo Mesîhiyên Ewrûpî behsa Îbrahîm Pêxember dikî, wê demê ew dizanin ew kî bû û hez dikin li ser jiyana wî zêdetir bizanin, herwiha dema tu behsa zarokên Îbrahîm dikî, ew hez dikin bizanin çi hat serê wan."

Gurgo bawer dike dema ku Swêdî û Ewrûpî bi rêya sînemayê zarokên Îbrahîm nas bikin, wê bên ji bo welatê zarokên Îbrahîm ku Kurdistan e û wê Kurdan baştir nasbikin.



## Çinar li Kurdistanê yekem e



*Zaxo (Rûdaw)* - *Çinar Remezan Omer xwendekara Peymangeha Teknîkî ya Zaxoyê ye û li ser asta hemû peymangehên Herêma Kurdistanê îsal pileya yekem bi dest xist: Puanên wê ji sedî 97.8 bûn.*
*Rêvebirê Peymangeha Teknîkî li Zaxoyê Dr. Hîşam Yusif, ji Rûdawê re eşkere kir ku ne tenê îsal peymangeha wan ev serketin bidest xistiye, sala borî jî xwendekarek ji peymangeha Zaxoyê li asta Herêma Kurdistanê pileya yekem bidest xistibû.*

### Di pirsgirêkên navbera jin û mêr, keç û xortan de

# Jin dibin qurban û mêr bi azadî tevdigerin

**Soran Behaedîn** Hewlêr

Sê sal berê Cîhan. S. bi mêrekî re reviyabû, roja 16'ê Hezîran a 2010'an li mala wê li gundekî nêzîkî bajarokê Xebat hat kuştin. Piştî kuştina Cîhan (28) hevjînê wê doz li dijî mirovên Cîhanê vekir. Mêrê Cîhan ku çekek ligel bû, daxwaza mafên xwe dikir û ji bo Rûdawê ragihand: "Dixwazim tometbar bên girtin, mafê xwe dixwazim." Lê piştî çend rojan ji van axaftinan ligel kujerên Cîhanê lihevhatina eşîretî kir û tenê Cîhan bû qurban.

Di pirsgirêkên ku di navbera jin û mêran de li Kurdistanê diqewimin, di peywendiyên evîndarî, revandin û têkiliyên nehênî yên piştî mêrkirinê de, bi piranî jin û keç dibin qurban û mêr bi hêsanî ji wan derdikevin.



**Li Hermêma Kurdistanê qanûn ji bo kur û keçan cûda tên bikaranîn û keç dibin qurban.**

Li gor civaknas Senger Yûsiv, di hemû pirsgirêkên bi namûsê ve girêdayî de, jin dibin qurban: "Ji ber namûs di hesta her takekesekî civakê de bi kûrahî rehên xwe berdaye, bi awayekî ku bi ti hawî di vî warî de nermiyê nîşan nadin."

Navenda Newa ji bo jinên tehdîtkirî di 18'ê Îlon a 2007'an de li Hewlêrê hat vekirin. Ji wê demê heta dawiya meha şeşan a îsal 418 jinan berê xwe dane vê navendê, ku bi piranî ji ber danîna têkiliyan ligel xortan rastî pirsgirêkan hatine, lê mêr bi awayekî azad tevdigerin. Li gor agahiyên Rûdawê, heta niha nêzîka 10 jinan li navenda Newza çûne derve û hatine kuştin.

Li taxa Qetewî ya Hewlêrê keçek, ji ber ku peywendiyeke wê ya evîndariyê digel xortekî hebû, hat kuştin. Cîranê vê keçê dibêje: "Wî xortî keçik xapand û nedixwest wê ji xwe re bîne. Niha xort reviyaye û keça bextreş hat kuştin."

Rêvebira Şopandina Tundûtûjiya Dijî Jinan li Hewlêrê bi wekalet, Komîser Jiyan Teliet, amaje da di piraniya pirsgirêkên navbera jin û mêran de jin dibin qurban. Komîser Jiyan diyar kir ku hinek kur hene destdirêjiya seksî dibin ser keçekê, lê ger keç bixwaze wî gilî jî bike, ji tirsa xizmên xwe newêre: "Keç tê kuştin û kur jî jiyana xwe bi awayekî normal dibe serî, ger bê zîndankirin jî di demeke kêm de tê berdan."

Roja 2'ê Cotmeh a 2010'an li gundekî sînorê Kesnezan jinek bi navê S. S. (29), dayika 2 zarokan dema dûcanî bû hat kuştin. Ev jin dema 5 salan bû reviyabû, mêrê S. ku sedemê kuştina vê jinê bû, daxuyand: "Daxwaza mafê xwe ji hikûmetê dikim."

Berdevkê Civata Dadwerî ya Herêma Kurdistanê, Ebdulbasit Ferhadî, dide zanîn ku qanunên li Kurdistanê tên bikaranîn, li ser kur û keçan bi heman awayî cîbicîh dibin: "Herwiha di gelek rewşan de li gor yasa rêzeke zêde ji bo jinan tê girtin, ji ber wek qurbanî û tawanlêkirî tên dîtin, lê nerîna civakê bi vî hawî ye ku jin dibin qurban û mêr jî rizgar dibin. Dema kurekî wan karekî xerab kir ne amade ne bikujin, lê ger jin tenê axaftin li ser bê kirin, bi çavekî sivik lê tê nerîn û tê kuştin jî."

Piştî ku bi çavê xwe dibîne, jina wî ligel mêrekî din razaye, X. E (65) ji bilî kuştinê bîra tiştekî din nake. Tevî ku Îslam û yasa vê rêyê li ber digrin, lê piştî 30 salan ji jiyana hevbeş X. bi tawana kuştina hevjîna xwe ket zîndanê. Niha X. hukmê xwe xilas kiriye û dibêje: "Ji hertiştî nexweştir ew e mêrê ku min wî ligel jina xwe dît, niha li sûkê digere, nikarim bikujim û hikûmet jî wî nagire."

Komîser Jiyan behsa xiyaneta hevjîniyê kir ku di encamê de jin tê berdan, kuştin yan jî dikeve zîndanê. "Kur jî bi pereyan lihevhatinê çêdike û dawî li pirsa wî tê." Navborî ji keçan dixwaze haya wan ji xwe hebe ji ber herdem ew dibin qurban. Komîser Jiyan tekez dike ku ti ferqê naxin navbera keç û kuran: "Em hewl didin ji bo keçê çareseriyekê bibînin."

Şanaz (19) nasnavê jinekê ye ku 2 zarokên wê hebûn, roja 16'ê Tebax a 2010'an li Hewlêrê hat kuştin, 5 mehan berî kuştinê wê daxwaza berdanê ji mêrê xwe kir, ji ber têkiliya wê bi kurekî din re hebû, lê mêrî wê telaq neda. Li dawiyê mêrê Şanazê bi 20 hezar Dolaran ligel xortê ku ji jina wî hez dikir, lihevhatin çêkir û jina xwe berda, lê dîsan jî Şanaz hat kuştin û xortê ku yarê wê bû, bêyî pirsgirêk tevdigere.

Di Îslamê de cezayên ji bo zînakeran hatine danîn ji bo jin û mêr, keç û kur wek hev in. Civaknas Senger Yûsiv dibêje hinek mêr wiha bifikirin ku tenê jin namûsa mêran bin, lê: "Ti belgeyeke olî ji bo van gotinan nîne, serdestiya mêran wiha kiriye bi sanahî xwe ji pirsgirêkan derbas bikin û nekevin jêr barê yasayan."

### Bêjera Zagroz TV Şilêr Bapîrî:

# Ji bo şuhretê kar nakim

Eger wê karê ragihandinê nekiriba, ew ê siyast bixwendiba û karê siyasî bikira.

**Dilbixwîn Dara**

Di vê dema dawiyê de gelek ciwan ji Kurdên Rojhilat li Başûrê Kurdistanê di warê ragihandinê de kar dikin. Beşekî mezin ji wan li Başûrê Kurdistanê xwe di warê rojnamegeriyê de bi pêş xistin û karên serkeftî dikin. Rojnamegerî ji xwe re kirine pîşeyekî sereke. Yek ji wan Şilêr Bapîrî ye.

Şilêr Bapîrî Kurda Rojhilatê Kurdistanê ye. Ji 17 saliya xwe de di warê ragihandinê de kar dike, ew di ragihandinê de xwediya bakaloryos, ev saleke weke bêjer di Zagroz Tv de kar dike. Herwiha ew niha li Hewlêrê li Zankoya Selahedîn di Kolêja Wêje de, xwendekara beşê ragihandinê ye. Me pirs kir, çi xweşiya vî karî ji bo wê hebû? Wê çima bêjerî hilbijart? Şilêr xan bersiv da û got: "Min bi xwe bêjerî hilbijart, ji berê de min ji vî karî hez dikir, bi taybetî karê ragihandinê di warê siyasî û beşê nûçeyan de." Şilêr Bapîrî diyar dike ku wê dema dest bi vî karî kirine rastî tu astengên cidî nehatiye.

Li ser pirseke gelo di vî karê rojnamenûsî de dixwazî xwe bigihînî kuderê? Ew diyar dike ku weke her rojnamevanekê ew jî dixwaze xwe bigihîne cihekî, lê heta niha diyar nekiriye ka ew ê heta kuderê biçe. Şilêr Bapîrî naxwaze teqlîd bike, ji ber vê yekê jî ew kesekî ji xwe re nimûne nagire, ew dixwaze bi xwe hebe, ne ku weke kesekî din be. Li ser zehmetiya bêjeriya televîzyonî Şilêr xanim dibêje: "Bêguman zor û zehmetî hene, bêjerî ne karekî hêsan e, divê mirov li ser karê xwe xwedî desthilat be, bi taybetî di warê dengûbasan de, dizanî dengûbas zindî ne, herwiha divê bêjer xwediyê bingeheke zanyarî ya berfereh be."

Bêjera Zagros TV Şilêr Bapîrî dibêje ku ew di karê xwe de azad e û heta niha ti sansur û astengî jê re derneketine.

Gelo navbera te û şuhretê çawa ye, weke gelek bêjera tu jî bi şuhretê re xwe wenda nakî? Bersivê dide û dibêje: "Ez gelekî ji şuhretê hez nakim, lê li welatê me hinekî giringiya wê heye, ez ji bo şuhretê karê ragihandinê nakim, ji ber ku ji karê xwe hez dikim, ez di nava ragihandinê de me."

Şilêr Bapîrî dibêje eger ku wê karê ragihandinê nekiriba, ew ê siyaset bixwendiba û di nava karûbarê siyasî de cih bigirtiba.



Xewna wan ew e ku bibin mele

# Feqeyên Biyare ne telefona dest, ne televizyon û ne jî radyoyê dibînin



**Ji bilî alîkariya xêrxwazan û weqfan feqeyên tekiyeyan ji ti derî tiştek nastînin. Piştî ku perwerda tekiyeyê xilas dikin jî ti saziyekê fermî bawernameya wan nas nake**

Di vê serdema teknolojîk de ku jiyana rojane bê satalît, bê înternet û bê telefonên mobîl nameşe, feqeyên tekiyeya Biyare wek 'milletekî cuda' bê van tiştan dijîn.

**Biyare (Rûdaw) -** Li tekiyeyên Biyare niha jiyaneke pir sade heye ku zêdeyî 50 ciwanên nûgihiştî bûne feqe û bi hêviya ku bibin mele. Sedan kîlometro derbas kirine ji bo ku bigihin vî cihî. Cil û destmala Kurdî, rûyên wan ên zarokane veşartine, ne telefonên mobîl bi wan re hene û ne televizyonê dibînin û ne jî guhdariya radyo dikin, wan dane pey xwendina kitêbên ku ev sedên salane feqe li ser wan tên mezinkirin. Haya wan feqeyan ji cîhana bi xirecir nîne û ger dinya serûbino be û tenê Biyare saxlem derkeve, feqeyên ciwan ên Biyare pê nahisin.

Ebdulrehman Mihemed (14) ji Qeladizê ligel birayê xwe yê biçûk Geylan, xwe gihandine tekiyeya Biyare ji bo ku xwendina feqetiyê xilas bikin, ger xilas jî bikin wê bibin xwediyên bawernameyekê ku li tevahiya fermangehên Kurdistanê tê naskirin, van herdu birayan got: "Xweziyeke me ye û me hilbijartiye."

### Keştiya Nûh Pêxember

Tekiye (xaneqa) di civaka Kurd de yek ji yekem saziyên xwendin û fêrkirinê ye, heta niha jî ev xwendingeh ji bilî zanînên olî berê xwe nade ti warên din ên xwendinê. 12 kitêbên destnîşankirî lê hene, divê xwendekar wan xilas bikin û divê feqe pile bi pile wan jiber bikin û ji nû bibin mele.

Berî 50 salan Hêmin û Hejar Mukiryanî, du helbestvanên navdar ên Kurd ev dezgeh wek 'Keştiya Nûh' binav kirin, wan jî xaneqa xilas kiribûn. Tevî derbasbûna van hemû salan li ser avakirina xaneqa û jiyana feqetiyê, hê ev taybetmendiya xwe ji dest nedaye ku feqe her yek ji bajarekî berê xwe didin heman xaneqayê ji bo ku bixwînin. Ebdulrehman û Geylan ji Qeladizê û Hekîm ji Pênciwên û Dana ji Helebceya nû ligel 47 feqeyên din ku her yek ji wan ji bajarekî cuda ye, tekiyeya Biyare geş kirine.

### Ji dinyayê feqetî

Hejar ê helbestvan feqeyên tekiyeya Biyare wek miletekî serbixwe binav kirine, di serdemê mobil, internêt û satelite de, ne hêsan e hejmareke ciwanan bibînin ku van tiştan red bikin, li tekiyeya Biyare ku malên li tenişta wê bi van tiştan dagirtî ne, ciwanên nûgihayî yên jiyana feqetiyê ji dinyayê bê xeber in û tiştekî wan nîne, wan ji nûçeyên cîhan û Kurdistanê agahdar bike.

Ebdulrehman Mihemed ku ji Qeladizê ye, nizanîbû ku mirovekî li bajarê wan hefteya borî xwe teqandiye. Navborî ku destmala serê wî wek mêrekî têgihiştî pêşan dide, got: "haya min jê nîne li bajarê min karekî bi vî rengî qewimî be, ne televizyonên me hene û ne jî em mobilan bikar tînin, êdî emê çawa bizanin." Hevalên Ebdulrehman naxwazin bêjin ew dixwazin televizyonê bibînin.

Berpirsê Tekiyeya Biyare, Mela Faxir Şeqalaweyî, ku ev 17 sal in li vê tekiyeyê xizmetê dike, got: "Feqeyên ku hatine fêr bibin, ger rêya bikaranîna mobîlê li wan negrin, wê dema wan vala here, ji bo radyo û televizyonê jî li tekiyeyê rê li ber wan nayê vekirin." Navborî diyar kir ku ji bo wergirtina feqeyan sê şertên serekî hene, divê feqe heta sinifê şeşan ê bingehînî li xwendingehê xwendibe, wê ezmûnê xilas bike ku ji feqeyan re di destpêka wergirtina wan de tê kirin, divê girêdana feqeyan bi ti hêzeke siyasî re nebe.

### Bawernameya bê berhem

Di xwendina feqetiyê de, zîrekî û jêhatîbûna feqe diyar dike ka çend salan dixwaze heta bibe mele, dema dibin mele jî ti saziyên dewletê bawernameya ku tekiye dide wan, nasnake. Mela Faxir Şeqalaweyî ragihand: "Niha em hewl didin Hikûmeta Herêmê qayîl bikin ku bawernameya feqeyên me bi awayekî fermî nas bike, niha ti cih bi fermî vê bawernameyê nas nakin."

Derbarê dabînkirina xerciya feqeyan, navborî da zanîn ku ji bilî alîkariyên xêrxwazan û weqfan, pereyan ji ti aliyekî din wernagrin. Feqeyên ku ligel me axivîn ji jiyan û xwarina xwe ku tekiye ji wan re misoger dike, razî bûn.

Hekîm Kemal (12) bi cilê Kurdî û destmaleke ku li ser awayê feqeyan pêçabû, qilafeteke xweşik dabûyê, dibêje ew her du mehan carekê diçe mala xwe ya li gundekî nêzîkî bajarokê Pêncwênê ye. Hekîm dibêje ku nan û debara wan li ser tekiyê ye û ji bo kirêya çûnûhatina wan jî hinek pereyan dide wan. Derheqê bawernameya ku dû re pêwîstiya ti fermangeha mîrî pê nabe, dibêje, „hatime ku di olê de bibim pispor, tiştê girîng li cem min fêrbûna şerî'etê ye ne damezrandin û bawername ye."

Tendirustî

## Fatereşk, Sipil



Dr. Necla Tursun

Bi almanî Milz, bi latînî Lien, bi yunaniya kevin Splen. Sipil di nav Kurdan de wek fatereşk jî tê naskirin. Sipil ji bo bedena mirov organeke pir girîng e. Fatereşk li kêleka mîdê a çepê li ser gurçika çepê cihê xwe digre. Mezinbûn 12x 8x 4 û 150- 200 g. e. Sipil ji bo bedena me xwînê diparzinîne û madeyê ji bo bedena me xurt bike hildibijêre, ew bi taybetî ji bo parastina bedenê kar dike. Di çêkirina xwînê de jî alîkariyek pir girîng dike, ji bo xwîn bi awayekî wekhev li bedenê bê belav kirin erkên wê hene.

**Çi wezîfeyên Sipilê hene?**

**Dr. Necla Tursun:** 3 erkên Sipilê yên girîng hene, çêkirina hucreyê spî ji bo nava xwînê; ji ber ku ew hucre jî mîkroba dikujin, ew jî ji bo parastina vucûdê gelek pêwîst in. Ya din jî embar e; ew jî ji bo hucreyan e û çêkirina hucreyên sor yên ku di nava xwînê de oksijenê digerînin. Herwiha Sipil karekî wê yê din jî pir girîng û pêwîst ew e ku ji zarokan re heta 6 saliya wan xwînê çêdike.

**Nexweşiyên Sipilê çi ne?**

Tumorê baş û yê xirab, kîstê ji dema çêbûnê ve û yê pişt re çêdibe, kîstê bi derewa û kîstê parazîtî. Carna înfeksiyona Sipilê jî çêdibe, vîrus dikarin bikevinê û ew dibe sedema kulkirina wê; wextê pirsgirêkek wisa çêdibe ev yek bi derman tê tedawî kirin.

Carna damara xwînê ya tê ser Sipilê dixitime, ango enfakt (krîz) çêdibe, hingê mirov tedawî nake, pêwîst neyê dîtin, ew damar wisa xitimandî dimîne pir ne xeternake.




**Sipil ji çi derbê dixwe û çawa tê kontrol kirin?**

Mijarek gelek girîng ew e ku di dema qezakirinê de Sipil dikare birîndar bibe, an jî biderize û dikare bibe ket ket jî, ev yek gelek tehluke ye, ji ber ku hingê xwîn dirije dibe ku mirov jiyana xwe ji dest bidin. Di rewşên wisa de dibe ku di cîh de bi awayekî lezgîn mudaxele bê kirin; bi rêya emeliyatê Sipil an bê dirûtin an jî dibe bê derxistin. Dema ku zu mudaxele nebe û ji ber ew xwîna dikeve hundirê mirov, ev yek dibe sedema mirinê. Dema ku Sipil normal be ango ne zêde mezin be hingê bidest nayê hîskirin, tenê bi ultrasyonê an jî bi tomografî baş tê xuyakirin bi rêbazek wiha tê kontirol kirin.

**Gelo mirov dikarin bêyî Sipil jî bijîn?**

Belê mirov dikarin bêyî Sipil bijîn, lê dema ku pişik ji bedenê derket êdî vûcut nikarê erîşa xwe ya li hemberî mîkroba û vîrusa weke berê baş pêkbîne. Beden pir bê hêz dimîne û tiştek din jî ew e dema Sipil ji normal mezintir be ev dikare ku ji ber pençeşêra xwînê jî be, lê carna jî bêyî sedem jî Sipil mezin e, em dikarin bêjin ku ev ne nexweşiyeke normal e.

**Amadekirin: Zelal Çelîk**

*****Dr. Necla Tursun** ji Bakurê Kurdistanê ye, niha li Almanya dijî û pizîşka nexweşiyên hundir e.*

# Alman li Mêrdînê fabrîkayek kozmetîkê ava dikin

Nasir Duyan dixwaze fîrmaya kozmetîkê li ser 10 donim erd avabike û di demên pêşî de karekî 2 mîlyon Euroyî bike û 50 karkeran bide xebitandin.

**Cesur Cenk** Mêrdîn



**Duyan vedigere welat û dixwaze li ser axa ku lê mezin bûye cihekî îstîhdamê veke**

Li Mêrdînê bi şirîktiya karmendekî Kurd û yekî Alman wê fabrîkeya kozmetîk bê avakirin ku li Tiriyeyê bibe fabrikeya herî mezin û liEwrûpayê jî bibe sêyem. Esasê fabrîka kozmetîkê, dawiya vê mehê tê danîn û tê çavêrekirin ku ev fabrîke wê îstihdama heremê jî zindî bike û zêdeyî 50 kes tê de bixebitin. Serokê Komeleya Karsaz û Pîşesaz a Mêrdînê (MUSÎAD) Nasir Duyan got ku Mêrdîn hêdî hêdî bala karsazên herêmê û biyanî dikişîne.

Li Herêma Sanayiyê ya Mêrdînê, xwediyê fabrîkeya sêyem mezintirîn a Almanya Dieter Seidel û karsazê Mêrdînî Nûrî Taniş dawiya vê heftê wê bingehê fabrîkeya kozmetîkê bikolin. Şirîkê fabrîkeyê Nûrî Taniş got, “em ê berê bi 2 mîlyon Euroyî dest pê bikin, lê armanca me ew e ku em wê bigihînin 20 mîlyon Euroyî.”

Tanişê ku li Almanya kûafurî dikir got, “min zincîra kûafuran ava kiriye, di vê zincîrê de di derheqê alavên ku di kûafuriyê de bi kar tên min du salan perwerde dît. Piştî perwerda kûafur û amûrên wê min di zincîra xwe ya kûafuriyê de alavên xwe bi kar anî û li bertekên erênî rast hatim. Me dest bi hilberîna amûrên xwe kir. Kûafurên derdorê eleqeya zêde nîşanî alavên me kirin û me jî dest bi hilberîna lez kir û me ew derxist asta navnetewî.” Ji Tirkiyê, Sûriyê, Îraq û Almanya daxwazek zêde dîtiye. Li hember van daxwazan xwestiye ku dezgehê xwe firehtir bikin. “hevdîtinên min û yên Dieter Seidel bi encamek erênî derbas bûn. Pêşî em li Stenbolê fikirîn dû re me biryar li ser Mêrdînê da.”

### Li Tirkiyê herî mezin, li Ewrûpayê sêyem

Di derheqê avakirina fabrîka kozmetîkê û armancên xwe de Taniş got: “min xwest li warê xwe, axa ku li ser mezin bûme, cihekî îstîhdamê vekim û deynê xwe yê dilsoziyê bidim. Şirîkê min Dieter Seidel li Almanya xwediyê ji sêyemîn piyasaya mezin a kozmetîkê ye. Di destpêkê de em ê ji 50 mirovî re cihê kar biafirînin. Wê ev hejmar bi avakirina karên nû ve her biçe zêde bibe.”

Nûrî Tanişê got li Tirkiyê kesê ku bixwaze bibe xwediyê markeya wan ew ê derfetan bidine wan û wiha domand, “Ku daxwaz hebe em ê ji welatên Ewrûpa li ser navên markeyek din hilberîna fason bikin. Li Tirkiyê û li Ewrûpa kesê ku bêje ez dixwazim marke ya min hebe jî em ê derfetan bidin wî. Em ê di fabrîkeya xwe de ji bo por û çerm çi cûre hebe, di kalîteya herî baş de hilberînin”

Bi têkiliyên Îraq û Sûriye yên erênî aboriya Mêrdînê jî zindî dibe. Serokê Komeleya Karsaz û Pîşesaz a Mêrdînê (MUSÎAD) Nasir Duyan got li herêma organîze sanayî yê heta niha daxwaza avakirina 60 fabrîkeyan hatiye, ya dawî jî ji bo kozmetîkê yekî Alman û yekî Mêrdînî daxwaz li wan kirine.

Dûyan daxuyan ku fîrmaya navborî wê li ser 10 donim erd demên pêşî karekî 2 mîlyon Euro bike. Piştî wê di nava du salan de wê bikin 20 mîlyon Euro. Wê pêşî 50 xebatkar bistîne û dawiyê ev hejmar piştî du salan bigihêje 200 xebatkarî. Fabrîke wê di çileya 2011’ an de dest bi hilberînê bike û wê fabrîkeya kozmetîkê ji Almanya bar bike Mêrdîn.”

**Bîografî**

Nûrî Taniş li Navçeya Mêrdînê Rişmil hat dinê. Zewicî ye û bavê du zarokan e. Taniş ji sala 1980’an û vir ve liAlmanya li bajarê Mannheimê dijî. Taniş pîşeya kûafuriyê ya ku di sala1984’an de dest pêkir 3 salan şagirtî û 2 salan jî bi pisporî kûafurî kiriye. Di dema xebatê de li dibistana Justus Von Liebig dibistana kûafuriyê domand û di sala 1987’an de kuta kir. Li çend bajarên Almanyayê 4 dikanên kûafuriyê vekir û gihîşt armanca xwe ya zincira kûafuran. Di derheqê amûrên ji bo por û çerm de du salan perwerde dît. Piştî wê perwerdeyê amûr û alavên bi kar tîne ew bi xwe çêdike. Piştî bertekên erênî wî bi xwe dest bi hilberînê kir. Di sala 1996’an de bi navê Taniş fabrîkaya kozmetîkê vekir. Di heman demê de bû xwediyê markeya Taniş Profesyonel. Berên wî çê kiribûn gihaştin qada navnetewî. Wî bi biryarekê xwest vegere welatê xwe û li wir patroniya kozmetîkê bike. Bi xwediyê fabrîkeya ku li Almanya di mezinbûnê de di rêza sêyem de, Dieter Seidel re li welatê xwe Mêrdîn bi 20 mîlyon Euroyî fabrîkeyekê ava dike.

# Kelûpelên xerab Başûrê Kurdistanê dagîr kiriye

**Newzad Mehmûd** Silêmanî

Li Herêma Kurdistanê, hejmareke zêde ya kelûpelên xerab hene. Kiryarên ku li kalîteya ti+tan dipirsin pir kêm in, loma xewna dewlemendbûnê ji bo kesên ku derbasî nav karê bazirganî dibin, ne xewneke dijwar e.

Dema Pan Zee, ji bo cara yekem hat Herêma Kurdistanê û kelûpelên kalîte nizim ên Çînî li bazarên Kurdistanê dîtin, zêde nîgeran bû û loma niha erkê vê jina Çînî ji bilî firotinê, vegerandina baweriya Kurdan bi titşên Çînê ye.

Pan Zee Mang (24) ji Çînê ji bo karê bazirganî hatiye Kurdistanê û ligel xwe kelûpelên kalîte bilind ên Çînî anîne û dixwaze wê mohrê rake, ku bazirganên Çînî li Herêma Kurdistanê malên bê kalîte difroşin û dibêje: "dixwazim ji xelkê re bêjim ger perên zêdetir bidin, wê malên bi kalîteya herî baş bidest bixin."

Li gor serjimêriyekê ku şaxê Silêmaniyê yê Yekîtiya Hawirde û Nardinkarên Kurdistanê daye Rûdawê, niha 2500 bazirganên Silêmaniyê di navbera Herêma Kurdistanê û Çîn, Tirkiyê, Îran, Ukraine, Tayland, Erebistana Siudî, Îmarat, Urdun, Misr û Sûriyê de, karê anîn û birinê dikin. Bi baweriya Cîgirê Serokê Yekîtiya Hawirde û Nardinkarên Kurdistanê, Şêx Eta Mihemed Nûrî, niha ‘bazirganên reş’ li Herêma Kurdistanê berbi kêmbûnê diçin, nemaze ji ber hewldanên yekîtiya wan: "me tevahiya bazirganên xwe agahdar kir, her kesê ku tiştên xerab bîne û bi nirxê zêde bifroşe navê wî dixin lîsta reş, lê mixabin Hikûmeta Bexda rê nade ku li sînorên bajarên Îraqê ligel Herêma Kurdistanê jî kontrola corî bê danîn, ku gelek tiştên xerab ji Îraqê tên."

Lê navborî tijekirina bazarên Kurdistanê bi tiştên bê kalîte tenê wek guneh û tawana bazirganên reş nabîne: "xelk jî kelûpelên erzan dixwazin." Piraniya tiştên xerab ku tên Herêma Kurdistanê, li Çînê tên çêkirin. Nûnera şirketeke Çînî li Silêmaniyê, ji şikênandina navdariya bazirganî ya Çînê dilgiran e: "2000 bazirganên Îraqî li Çînê dijîn û kelûpelan dişînin vir, ew tiştên herî erzan divên û guh nadin corê wan."

Nûnera şirketa Grow a Çînî, Lisa Cang, ragihand: "li vir armancek heye: buhayê kêm, tiştên xerab û qazancên zêde." Niha Cang dixwaze bi xwe li Silêmaniyê serperiştiya firotina kelûpelên baş bike, ku bi xwe ji Çînê anîne, lê: "li vir xelk fêr bûne tiştên erzan bikirin bêyî ku li kalîteya wan bipirsin. Ew zêde pirsiyara buhayê dikin û giringiyê nadin kalîtê."

Fatin Reşîd ku ji sala 1997’an karê bazirganiyê dike, tekez dike ku kontrola corî nikare rê li ber bazirganên reş bigre: "mixabin hinek bazirgan dîroka afirandina ser xwarin û eşyayan diguherin û kontrola corî û xalên kontrolê derbas dikin."

Alîkarê Talabanî ji bo karûbarên bazirganî, Ebdulla Hacî Seîd, bi nîgeranî amaje dide rola xerab a ku bazirganên reş dilîzin: "em ligel bazirgan û şirketên ku ligel wan kar dikin jî axivîne û niha me kontrola corî daniye." Navborî ku bi xwe ligel şandekê serdana Çînê kiriye diyar dike ku ligel wezîrê bazirganiyê yê Çînê gotûbêj kirine: "Wezîrê bazirganiyê yê Çînê got hinek caran bazirgan daxwaza kelûpelên erzan û xerab dikin."

Ebdulla Hacî Seîd wiha axivî: "di herdu salên borî de, me hejmareke bazirganan xist lîsta reş û tiştên wan hatin destbiserkirin, lê dû re dengê nerazîbûnê bilind bû û hat gotin ku qaşo em nav û dengiya bazirganî dişikînin."

# Berlîn de derheqî ewro û meştî Kirdkî (Zazakî) de Konferans




Berlîn de rojanî 29 - 31 yî na aşme (Oktobre) de 5. rojî kulturî Kurdî virazîyenî. Rojî kulturî hetî Komeleya Kurdistan Kultur- und Hilfsverein e.V. – Komkar – Berlîn û Înstîtutê Ziwan û Kulturê Kirmancî (zaza) IKK e.V ra ameyî hedre kerdiş.

5. rojî kulturî Kurdî 29î aşmê Oktobre roja îne sehet 17. 00 de dest ci kenî. Rojanî kultur de emser giranî ha ziwanî ser. No ridra zî emser nê rojî bi nameyî 5. rojî kulturî kurdî « ziwanî kurdî » ameyî amade kerdiş.

5. rojî kulturî Kurdî de eserî taye nuştoxan bîyerî naskerdene û edebîyat, nîşandayişî resiman, tîyatro û muzikî kurdî zî estî.

Çarçeveyî nê rojanî kulturî Kurdî de roja şeme ( 30î aşm) seva Kirdkî ameya abirnayiş.

Roja şeme programî Kirdkî bi qisêkerdişî endamî komîteyî rayeraberdîşî ya IKK-e.V. Munzur Çem dest ci keno. Dime ra Seyîdxan Kurij temayî „ 1980 ra dime Almanya de bi Kirdkî (Zazakî) kar û xebatê ziwanî“ û Çeko temayî „ kar û xebatê kirmanckî de ray û îmkanî“ ser konferans bidî. Mîyan/ Pause ra pey bi kirdî tîyatro (Rindo) yeno kaykerdiş.

Hetî şanda yew xebatoxî Unesco derheqî „Huqûqo mîyanneteweyî, UNESCO û ziwananî bindestanî“ de agahdarî bido hedreyan. Penî panelan de Hurênayîş / Podiumdiskusion esto.

Şand zî bi kirdkî muzîk esto.

Heme panelî na roj hetî Înstîtutê Ziwan û Kulturê Kirmancî (zaza) IKK e. V ra ameyî hedre kerdiş. IKK e. V serrê 2001 de, paytextê Almanya Berlîn de hetî yew grubê Kurdanî kirdkî qisêkerdoxan ra ameya awan kerdiş. IKK e. V heta niha derheqî kultur û ziwanî kirdkî de çend konferansî bîn zî amede kerdî û kursî dersê kirdkî zî dûno.

# Fîlmê Laleşî Ancîyêno



Seté fîlmî ra yew vistike

Kurdîstanê Başûrî de fîlmê dokumenter yê îbadetxaneyê kurdanê êzidîyan Laleşî ancîyêno. Fîlm hetê wezaretê kultur û gencan yê hukmatê Kurdîstanê Başûrî ra yeno fînanse kerdene. Nameyê fîlmê dokumanterî “Laleş Perestgeha Êzidîyan e” yo û senarîstê fîlmî Tenya Kerîm a.

Tenya Kerîm derheqê muhtewaya fîlmî de va, “Fîlm de behsê destpêkê awanbîyayîşê Laleşî û dînê êzidîtîye yeno kerdene. Û fîlm de behsê urf û edetanê êzidîyan zî beno. Fîlm de roşanê êzidîya zî dîyenê şinasnayene.”

Fîlmê “Laleş Perestgeha Êzidîyan e” dorê 40-45 d qayan o, nika merheleyê montajî de yo. Tenya Kerîm vana, eke fîlm temam bibo, ma seba festîvalanê fîlman yê cîhanî şawenê û ma wazenê eynî wext de heme kanalanê kurdan de bêro nîşan dayene.

## Nameyê ca û şêngehanê kurdan apey gêrîyenê

Komîteyê tetbîqkerdişê madeya 140. ya qanûnê bingehînî yê Îraqî qerarêko muhîm girewt. Nameyê mintiqa, ca û şêngehanê kurdan ke zemanê rejîmê Beasî de vurnîyabîy erebkî, do nameyê înan ê kurdkî bêrê îade kerdene. Komîteyê tetbîqkerdişê madeya 140. qerarê destpêkerdişê xebata xo bi belgeyêka resmî pêşkêşê walîtîya Kerkûkî kerd.

Bi no qayde nameyê mintiqa, ca û şêngehanê kurdan ke zemanê rejîmê Beasî de vurnîyabîy erebkî, do hewna bi nameyanê kurdkî bêrê name kerdene. Karbidestan da zanayene ke do demêko tewr nêzdî de dest bi tetbîqkerdişê qerarî bibo.

# Soro û romannuştoxîya Deniz Gunduzî

Huseyîn Karakaş

Fikrê mi no yo ke bi kirmanckî roman nuştoxîye karode zaf-zaf çetin o. Her çî ra ver, derheqê romannuştoxîye de nê serranê peyênan de çîyê ke eşq û hewes bidê nuştoxan zîyader nîyê. Ez ge-ge kovar û rojnameyan de rastê ci yena ke vanê “dewrê romanan temam bîyo”.

No fikir dinya de çiqas qebulîye vîneno, ez nêzaneno. Labelê qebulîya xo hîra yan kî teng, ferq nêkeno. Mi çim de bîyayena nê fikrî çîyode negatîf o. Û tesîrê xo romannuştoxan rê xirab o.

Na xirabîye ra pey problemê kirmanckî zî amey mi vîr, roman nuştene ez çira karode zaf-zaf çetin vîneno, fam beno.

Labelê fikrê mi nîya bo zî ma kataloganê weşanxaneyan ra vînenê ke dewrê romanan pey de mendene hetêk de, roj be roje daha zêde yenê çap kerdene.

Tayê nuştoxan rê esqê romanî her çî ra verêr o. Nînan ra yew zî Deniz Gunduz o.

Deniz Gunduzî hetanî nika di romanî, yew kitabê hîkayan û yew zî ziwan zanayoxîya kirmanckî ser o, çar kitabî nuştê. Mi kitabê ey pêro wendê. Romanê xo yê yewin Kilama Pepugî naye ra des serrî aver, demeyê ke newe çap bibî, mi wendbî. Labelê mi bes nêdî û par reyêna wend.

Çend asmî aver zî romanê eyê dîyin Soro kewt bi destê mi. Ez nişta ro bêsalx demêdo kilmek de mi o zî wend. Wendişê Soroyî ra pey no nuşte hişê mi de ame ra. Goreyê mi lazim o ke romannuştoxîya Deniz Gunduzî bêro krîtîk kerdene. Çiqas ke zagonê mi şî ser, ez wazeno nê nuşteyî de seveta romananê ey tayê çîyan îfade bikerî.

Verî Kilama Pepugî: Cor ra zî mi va, mi no roman di rey wendo. Dolima peyêne ke mi wend, ame mi vîr ke Deniz Gunduzî rê mektubêk binusî û bipersî û vajî “No senî roman o nîya?”

Kilama Pepugî, hetê viraştiş û mundişê hîkaye ra, hetê viraştişê karekteran û hetê ziwanî ra bêter kêmanîyê xo estê. Roman ca-ca vurîno. Tayê cayan de beno sey sanikan (estanekan), ca-ca zî tayê qismê bêluzimî kerdê mîyan, no tewir kerdo ra derg û berdo.

Nînan ra dot ziwan... Na nuqta de kitab sere ra hetanî peynî xezebo giran o. De vana kotî çi vajîyayo û çi eşnawîyayo, ca de bo, ca de nêbo, pêro dekerdê mîyan. Roman zî ca-ca romanî ra vecîyayo, bîyo sey kitabanê arêkerdoxîye.

Labelê roman des serrî verî nusîyayo. Des serrî verî halê kirmanckî nuştene ame merdimî vîr, kêmî û xeletîyê Kilama Pepugî mîyan ra darîyênê we. Na sevete ra zî mi Deniz Gunduzî rê mektuba krîtîkî nênuşte û nêrusna, mend.




Nika zî bêrîme Soroyî ser: Soro Kilama Pepugî ra des serrî dima romanê Deniz Gunduzî yê didin o. Labelê çi heyf ke kêmîyê Kilama Pepugî des serrî dima Soroyî de zî bîyê rêz.

Mi kitab wend, na ro û xo bi xo fikirîyaya, no kitab çira nameyê xo Soro yo? Mabeynê karakteranê romanî de Soro sey mij û dumanî yo. Nameyê xo esto la o bi xo çin o. Sere ra hetanî peynî sey sîye, sey pejne maneno. Rey kî, tayê babetan de qet nameyê xo nêvîyareno.

Labelê no hal tena halê Soroyî nîyo! Karakteranê romanî de Meqsudê Keskî, Qemer, sitwan û çawîşî ra teber, ê bînî cinî, cuwamêrd pêro têdust der ê. Eke wendox înan bîyaro têver, halê cinîyan zaf korlax o. Zîyadêr sey aksesuarê seksî yenê vînayene.

Fikrê mi gore, no roman romanê xormekan o. Nameyê xo ganî “Soro” ney, “Xormekan” piranayê. Meqsûdo Kesk, sere ra hetanî peynî karaktero tewr zelal o.

Viraştiş û mundişê hîkaye de xeletîyê ke Kilama Pepugî de kerdê, nê romanî de zî bîyê. Mesela, tayê babetî yewbînî ra bêeleqe yê. Ca-ca ziwan beno monolog, yan kî beno sey karê arêkerdoxîye. Şuxulnayîşê ziwanî de zî xeletî zaf ê. Zaf çekuyî estê ke cayê xo de ney bêca nuştê. Na nuqta de merdim şikîno xeylê mîsalan bidero. Heto bîn ra ziwan ca-ca tam beno qiseykerdişê Gimgimî, ca-ca yeno standardanê Grûba Xebate ya Vateyî ser. Ca-ca zî kirdasî (kurmanckî) û tirkî, çi rast ameyo kerdo mîyan. Ziwanê babetan yewbînî ra visyaye yo. Na sevete ra roman, yew romanî ra zîyadêr sey pêserkerdişê hîkayan o. Tayê babetî sebrê wendoxî kenê teng. Mesela, qismê des û şeşin û des û hewtin.

Nê çîyê ke hetanî naca mi îfade kerdî, romannuştoxîya Deniz Gunduzî rê krîtîkê min ê. Labelê tena krîtîk ney, xeylê zerweşîyê mi zî estê.

Ez wazen na nuqta de zî çend çekuyan binusî. Her çî ra ver, ez Deniz Gunduzî pîroz kena. Kar û gureyê ey çerîyade girs û pîroze heq kena. Romanê xo, edebîyatê kirmanckî de gamêde hol a. Ez para xo ferq der o û zerrî ra wanen, zerrî ra hîs keno. Mi romanê ey de zaf çî dî û zaf çî zî musayo. Na sevete ra qisaya min a peyêne na ya: Sipas!...

## *Girtina Roj TV zererê digihîne Tirkiyê jî*



**Wladimir Van Welgenburg**

Hefteya borî parlamenterê Holendî Harry Van Bomel, di festîvala kultûrê kurdî li Den Haag daxwaz ji siyasetvanên Holanda kir ku azadiya baweriyan li: "her devereke cîhanê" biparêzin. Herwiha daxwaz kir ku tevî kampîna komkirina îmzeyan bibin ji bo rêgirtina li ber daxistina kanala Roj TV ku ji Denmarka pexşê dike.

Harry Van Bomel daxwaz ji hevrikê xwe yê siyasî Gert Velders jî kir, ku ew jî piştîvaniya Roj TV bike. Velders ku serokê partiya Rastgera Azadî ya li Holenda û bi helwestên xwe yên dijî Îslamê tê naskirin, ji hefteya borî li Amsterdamê ji ber daxuyaniyên xwe yên derbarê îslamê de tê dadgehkirin. Ev yek jî bûye sedemê derketina gengeşeyeke germ li Holenda derbarê sînorên azadiya baweriyan. Bi baweriya Van Bomel: "dem hatiye ku Velders îspat bike ku azadiya bîr û boçûnê diparêze. Loma divê berevaniya Roj TV bike." Ev parlamenterê Holendî ku bi helwestên xwe yên dostaniya Kurdan tê naskirin, ji bo Rûdawê da zanîn ku ew dixwaze doza Roj TV bibe parlamena Holanda: "ji ber Holenda, li gor welatên din, xwediyê dîrokeke dûr û dirêj ligel azadiya nerînê. Li vir azadiya nerînê gihaye radeya pîroziyê û ev zêde başe."

Van Bomel wiha axivî: "Roj TV mafên gelekî bindest diparêze." Lê Tirkiye vê kanalê bi hebûna têkiliyan ligel 'rêxistineke terorîst' tometbar dike. Van Bomel naxwaze bersiva tometbarkirina Tirkiyê bide, lê dibêje: "divê Tirkiye hewl nede li Ewrûpa sînor ji bo azadiya bîr û boçûnê deyne, ji ber pîvan û famkirina me ji bo azadiya nerînê pir cudaye ji wêya ku li Tirkiyê heye. Pêwîstiya me bi wêya tune ku medyayên me li ser bingeha yasa Tirkiyê binirxînin"

Bomel bi rêya Rûdawê wiha dibêje: "baştire Tirkiye ji dêlva sînordarkirina azadiya bîr û boçûnê ya Kurdan, Pirsa Kurd li Tirkiyê bi awayekî aştiyane çareser bike. Ji ber sînordarkirin rewşê aloztir dike û ev ne di berjewendiya Tirkiyê bi xwe de ye jî." Lê bi baweriya parlamenterê berê yê Ewrûpa û mamosteyê zanîngeha Sabanci li Stenbolê Yoost Lêxndaykk, rewşa niha ya Roj TV, rewşeke "xwe bi xwe dirust kiriye, ji ber hewl nedane wek saziyeke serbixwe ji PKK'ê kar bike." Yoost Lêxndayk diyar dike ku ji ber vê yekê ev kanal bû armancek ku hêsantir destê dijminên wê digihiyê. Li gor navborî: "Ev xeletiyeke ku PKK'ê kiriye û wiha kiriye ku kanala wan li Ewrûpa rastî gefên girtinê bê."

Tirkiye ji mêj ve guşaran dixe ser Beljîka û Denmarka bo girtina Roj TV. Sala 2008'an Almanya pexşa Roj TV qedexe kir. Roja 31'ê Tebaxa 2010'an Roj TV li Denmarka rastî gilînameykê hat ku: "piştîvaniya PKK'ê" dike ku Yekîtiya Ewrûpa (YE) PKK'ê wek "rêxistineke terorîstî" nasandiye. Lê Murad Qereyilan ku yek ji serkirdên PKKê ye, berê red kiribû ku wan ti alîkariya darayî yan rêxistinî pêşkêşî Roj TV kiribin.

## *Li jêr sîbera Tehranê*

**David Romano**



Min raportek di Rûdawê de xwend derbarê îdamkirina Lawend Yûsiv Mîrza (32), û Siyamend Yûsiv Mîraza yê birayê wî ku salekê jê biçûktire. Desthilatdarên Îranê ji bo çend salan ev herdu bira zîndan kiribûn. Biryar bû ku vê mehê Lawend bê azadkirin û keça wî ya 11 salî û kurê wî yê 10 salî roj bi roj xaneyên salnameya xwe tije kirine heta roja azadkirina bavê wan tê. Dema bapîrê wan bi coş diçe bajarê Sincan ê Îranê, bi hêviya ku kurê xwe bibîne ku biryar derketiye bê azadkirin, ji dêlva wêya ji bavê wî re hat gotin ku herdu kurên wî hatine darvekirin. Bêyî ti agahdariyekê, bêyî bilindkirina daxwazekê, bêyî şahidhalekî û bêyî xatirxwestinekê. Mêrê kal jî bi bihîstina vê nûçeyê re, dilê wî rawestiya û mir.

Heftane em guhdariya nûçeyên îdamê yên bi vî rengî dikin. Bi piranî karbidestên Îranê kesên ku darvedikin wek 'dijminê Xweda' didin naskirin. Diyare niha dijminên Xweda zêde bûne, nemaze ji gava ku Mehmûdehmedî Nejad bûye serok. Navê hinek qurbaniyan digihin ber çavê cîhanê wek: Aras Rehmanîpûr, Mihemed Reza Elî Zeman, Ferzad Kemanger, Elî Heyderiyan, Ferhad Wekîlî, Mehdî Îslamiyan, Şêrîn Elemholî û Nezîhe Yasemînî. Wek çawa dar li daristanê zêde dibin, ew jî bi vî rengî bi bêdengî ji nav me bar dikin.

Bizane ku rê nadin rojnamevan ji vê daristanê nêzîk bibin, ji ber ku dema cîhan mijûle bi temaşekirina bûyerên Îraq û Filistînê, kesên din wek Mehmûd Ehmedînejad destê gunehbariyê dirêjî rojava dike, fermanberên naskirî yên dewletên dîktator li çiyayên Kurdistanê, Tibet, Çîçan û cihên wendayî yên din ên cîhanê digerin û daran zêde dikirin û haya kes jî jê nîne. Kesên van karan dikin wek karmendekî hikûmî yê normal rojane karên xwe cîbicîh dikin, forman tije dikin, pirsiyaran dikin, behsa yasa û rêbazan dikin, wê dema ku îşkencekirin û îmzeya îdamkirinê yên wê roja xwe xilas kir, telefona hevjînên xwe jî dikin û dibên emê şîvê li malê bixwen.

Ez rastî aciziyeke taybet dibim dema nûçeyên darvekirinê li Îranê dixwînim, ji ber min bi çavên xwe ew karbidestên ne naskirî yên rêjîma Îranê dîtine. Di Tîrmeha 1999'an de di demeke xerab de û li cihekî xerab dîtiye ku ew jî bajarokekê Kurdistana Îranê nêzîkî sînorê Îraqê bû. Xwepêşandanên xwendekaran li piraniya bajarên Îranê hebûn, lê li wî cihê ku lê bûm hê xwepêşandan nehatibû kirin. Destê rêjîma Îranê herdem li ser dilê wê ye. Çend zêrevanekî Îranê ez birim avahiyeke Wezareta Îtîlaat ku pêwîst nake behs bikim, ku avahiyeke dîwar bilinde û li piraniya welatên zordest de tên dîtin. Berpirsekî zirav û tund û kîndar ê îsîtîxbaratan bi ser zêrevanan diqêriya, piştre pasporta min ji min stand û xwe amade kir bi Tehranê re baxive. Piştî ku ev berpirs nema xuya kir, çend demjimêrên pirsiyarkirinê ji aliyê komandosên Komara Îslamî, li ber tavê, bi rêve çûn. Wan zêde bi awayekî xerab reftar ligel min nekirin, lê ez neçar kirim tevahiya demê li ber tavê biqedînim, bêyî ku bikarim avê vexum. Tevî ku wan ligel pirsiyarkirina xwe, av vedixwarin. Zêde ligel min hewldan nekirin, ji ber ku min Farisî nizanibû.

Dibe ev ne bûyereke taybet be 'ji bo kesekî ku doktoraya xwe amade dikir li ser mijara nasyonalîstiya Kurdî', ger min ew herdu kes nedîtiba ku anîn hundirê avahiyê. Di otombîleke reng sipî de, du xortên Kurd ên têkdayî û destgirêdayî anîn meydana avahiyê. Me hevdu dît û qet jî min kesekî wisa bê hêvî û reng zer nedîtibû. Deng jî wan nedihat û rasterast avêtin hundir û piştre berpirsên hêrsbûyî çûn hundir. Nizanim ji ber çi ev herdu ciwan hatibûn girtin, yan çi hat serê wan. Ligel ku ti rojnamevanek li navçeyê nebû, lê li jêr sîbera vê rêjîmê ti mafekî dana agahiyan nîne, rêjîmeke ku heta yasayên xwe jî peyrew nake. Heta niha jî nizanim çi hat serê van herdu ciwanên Kurd. Piştî çend demjimêran ez hatim azadkirin û ez xistim pasekê ku berbi sînorê Îraqê diçû.

Pir dijware vê bûyerê pênase bikî, lê tevî ku min tiştên xerabtir jî dîtine, vê bûyera sade qet jibîr nakim. Piştî çend salan ji vê bûyerê û gava mijûlî axaftinê bûm ligel serkirdeyên partiya Komele û Partiya Demokrata Kurdistanê ya Îranê, li bingehên wan li Îraqê; careke din reng û rûyê wan herdu ciwanan hat bîra min. Rewşa xemgîn û bêdengiya piraniya pêşmergeyên PDK-Îran û Komele, ev bibîra min anîn. Dibe ev taybetiyeke hemû Kurdên Îranê be ku gelek tişt dîtine û dibe ku ne wiha be jî. Her dema tiştekî dixwînim li ser îdamê, herdem wêneyê rû û çavê wan herdu xortan tên bîra min û difikirim; gelo dibe çend kesên din hatibin îdamkirin û haya me jê nîne. Li gor min ew sembola pirsa Kurd in di warê navnetewî de, ji ber ku ev çendîn sal bûn ew û gelê Kurd nenaskirî bûn, dengê wan nebihîstî bû û ti kesî xema wan hilnedigirt.

## *Rola hunermendan di siyasetê de*

**Aslîka Qadir**



Gelek caran em ji zarê siyasetmedaran dibihîzin ku hunermend û siyaset du tiştên cuda ne û heqê hunermendan tune ku bikevin nava siyasetê. Qey tu bêjî hunermend ne mirov in, lê alavek in, karê xwe pê bidin qedandin. Ez dibêjim ew fikreke gelekî şaş e, heta bêjim fikreke ne normal e.

Hunermend ji hembêza civakê dertên, civak wan mezin dike û ev jî di xizmeta milet de ne. Ew nikarin li ber wê heqaretiya ku li milet tê kirin û li ber şaşiyên tiradejîk ên siyasetmedarên Kurd çavê xwe bigrin û nêrînên xwe neynin ziman. Hunermend nikare rojê 24 saetan tenê hunermend bimîne, ew jî wek her kesekî vî miletî, gerek bi derd û kulên gel re be. Ev jî ne bi dilê rêvebiran e, belkî rastî derdikeve holê û baweriya milet zêde bi gotinên hunermendan tên, ne bi yên nûnerên partiyan, ku rojekê tiştekê dibêjin, roja din ji gotinên xwe û sozên xwe vedikişin.

Siyasetmedar îro heye, sibê tune ye, lê hunermend wê her di dil û bîra gel de bimîne, wê bê hezkirin û guhdar kirin. Divê em ji bîr nekin ku stranbêjî û zargotina Kurdan, Kurd gîhandine van rojan. Gel hem di şahiyan de û hem di şînan de stran gotiye. Her straneke kurdî serpêhatiyek e. Stran avêtine ser qehreman û şehîdên Kurdan û herwiha bi strana êş û kulên milet anîne ziman. Bi stranan birînên xwe melhem kirine, kar û berxwedana xwe sivik kirine. Bizanibin eger lorîna dayîkên me, girya bişewat, lê-lê, lo-lo'yên me nebûna, Kurd niha tune bûn.

Li dinyayê binêrin, milet gişt azad in, tenê Kurd bindest û esîr mane. Vaye Filistîn 4-5 milyon in lê bûn dewlet, Kurd 40-45 milyon in û nebûne dewlet. Ev êdî heq dide me ku em bêjin «dîplomasiya Kurdan sifir e», weke ku birêz hunermend Şivan gotiye. Ez dizanim ev nêrîna hunermendan ne bi dilê siyasetmedaran e. Ji ber ku heqîqet tê gotin, xwe aciz dikin. Na, gerek her tişt bin cilê de veşartî bimîne. Tişta em dibêjin, gişt di dilê xwe de dibêjin, tenê ferq ew e ku em bi deng dibêjin. Em dibêjin divê rexne bê gotin, ji ber ku rastiya piştgirêkên siyasî bi guftûgoyan çareser dibin. Vêca bîna xwe hinekî fireh bikin, guh bidin dengê milet. Ma bê milet serok dibin?

Miletekî ku qîmet neda hunerê û hunermendan ti car nabe milet. Berê xwe bidin bernameyên siyasî yên Ewrûpiyan, tu dinêrî li gel Wezîrê Derve, yan Serokwezîrê welat, miheqeq hunermend jî (çi goranîbêj, çi lîstikvanê tiyatro, heta komêdiyen) di guftûgoyên pirsgirêkên siyasî de cîh digrin. Li cem me bi çavekî biçûk li hunermendan dinêrin. Bêyî alîkarî huner nikare pêşkeve, loma jî li Başûrê Kurdistanê stranên kurdî herimandine û gişt bûye arabesk û tirkabesk. Ka stranên me yên kal û bavan, ew stranên ku rêke dûr û dirêj, rêke bi xwîn, bi qurna, dev bi dev gihîştine hetanî rojên îroyîn? Ez nizanim Wezîrê Rewşenbîrî yê Başûrê Kurdistanê bi kîjan karan re mijûl e, li çi dinêre, navê vî jî nizanim. Hunermend nizanin bi kê re têkîliyan çêkin ji bo pilan û projeyên xwe. Yan jî ji ber xatirê xatiran wek rêvebirê TV'yekî usa datînin, ku ji hunerê serederiyê nake. Gava dibêjî bavo ev ne cihê te ye, dibêje «min pêşmergetî kiriye », mirov nizane bigirî yan bikene. Îcar hunermend serê xwe li kîjan dîwarî bixe? Eva realîta me ye.

Em qîmetê nadin xwe û hunermendên Kurd. Hunermendên Tirk, Ereb û Fars ji yên Kurdan çêtir tên ber çavan, ew tim li ser çav û seran tên qebûl kirin, ji ber ku ne Kurd in. Hunermendên Kurd ilahî şoreşgerên wextê xwe bûne, ji ber ku di nava milyonan de yek bûne, lê bi milyona mirov dû xwe birine. Wan (Meryem Xan, Sûsîka Simo, Zadîna Şekir, Nesrîn Şîrvan, Eyşa Şan) û gelekên din qanûnên kevneperest binpê kirine, loma jî civakê ew qebûl nekirine. Wan di bin şertên zor û giran de karê xwe meşandine. Em çawa dikarin wan ji bîr bikin? Em çawa dikarin kar û xebata radyoya Êrîvanê û bandora wê li ser her çar perçeyên Kurdistanê nebînin ? Gelo ne dengê Şivan Perwar bû ku di rojên qiyametê da ruh û hêz dida milet. Gelo stranên Mihemed Şêxo (di hejariyê de çû rehmetê), dengê wî yê zelal di guhê me de nake zingîn? Em çawa dikarin bêjin ku hunermend ji siyasetê dûr e? Werin em heqê hunermendan nexwin, qedir û qîmetê bidin hunermendên xwe û rê li ber wan vekin, wan bighînin gel.

**”Em li himberê qelsan têkçûn, li himberê bihêzan biserketin”**

# DalKurd bû şeşem

**Tîma Kurd a ku li Swêdê di lîga yekem a Başûr de dilîze DalKurd, maça xwe ya dawî ya vê sezonê jî lîst û heta sezona nû ya ku di Gulan a 2011'an de vedibe, wê amadekariyên xwe bike.**

**Dalarna (Rûdaw) -** Sezona 2010'an a Swêdê bi maçên roja Yekşemê bi dawî bû û DalKurd di Lîga Yekem a Başûr de di rêza 6. de ma.

Li Swêdê sezona ku di meha Gulanê de dest pêkir dawiya vê heftê bi dawî bû û hemû tîm wê heta Gulan a 2011'an navbereke dirêj bidin lîstikan. DalKurd di nîvê sezonê de rewşeke pasîf nîşan da û ji 13 lîstikan tenê 14 puan girtibûn, lê di nîvê duyem de hêz da xwe û puanên xwe gihand 39'an. Serokê DalKurd'ê Remezan Kizil ji Rûdawê re ragihand ku ew li hemberê tîmên bê hêz nebaş lîstine, lê li hemberê tîmên bi hêz bi serkeftî lîstine.

Tabelleya lîga Yekem a Başûr

| Tîm | Lîstik | Gol | Puan |
|---|---|---|---|
| Västerås SK FK | 26 | 25 | 52 |
| Sirius | 26 | 22 | 47 |
| Syrianska IF K | 26 | 6 | 45 |
| Hammarby TFF | 26 | 3 | 41 |
| Vasalunds IF | 26 | 5 | 40 |
| Dalkurd FF | 26 | 3 | 39 |
| Umeå FC | 26 | 9 | 34 |
| Gröndals IK | 26 | -8 | 33 |
| Valsta Syrianska | 26 | -9 | 32 |
| Bodens BK FFV | 26 | -24 | 32 |
| BK Forward | 26 | 5 | 31 |
| Carlstad United | 26 | -10 | 31 |
| Östersunds FK | 26 | -13 | 30 |
| A.Syrianska | 26 | -14 | 27 |



**Hêviya derbasbûna lîgeke jor ma sezona 2011'an**

DalKurd maça xwe ya dawî ya sezona 2010'an roja yekşemê li himberê tîma sereke ya lîgê Västerås SK FK lîst û winda kir. Li gor pûanên dawiyê wê tîma Västerås SK FK rasterast derbasî lîga jor Superrettan bibe û Sirius jî wê bi tîmeke lîga jor re maçên Plaf-Offê bilîze da ku derbasî jor bibe. Sê tîmên di rêza jêr de cih digirin jî rasterast dadikevin lîgeke jêr.

**Armanca sezona 2011'an: Lîga Superettan e**

Serokê DalKurdê Remezan Kizil sezona 2010'an û performansa tîma xwe ji Rûdawê re nirxand. Kizil daxuyand ku wan bi performanseke pasîf dest bi sezonê kirin û ji 13 maçên pêşî tenê 14 pûan bidest xistin. Kizil daxuyand ku ligel hinek seqetiyên lîstikvanan û hinek sedemên din jî hebûn ku wan gelek maçan winda kirine û wiha dom kir. "Me îsal potansiyela tîma xwe bikar neanî. Me bi destê xwe encamên ku me heq nekiribû bidest xist. Li hemberî tîmên qels me winda kir, lê li hemberê tîmên bihêz em di hemû maçan de biserketin." Kizil da zanîn ku di navbera sezonê ya meha Tîrmehê de wan sedemên têkçûnê nîqaş kirine û mudaxaleyê tîmê kirine û wiha pêde çû: "Me 9 lîstikvan û du antrenoran ji tîmê derxist. Du şûna wan de me du antrenorên xwedî ezmûn tevlî nava kadroya xwe kir û ji tîmên din 2 lîstikvanên nû kirîn û ji rezerva tîma xwe jî 5 lîstikvanên ciwan tevlî kadroyê kirin."

Kizil da zanîn ku piştî vê mudaxeleyê û guherandinê ew bi tîmeke ku 29 pûanên wê hebûn û serekiya lîgê dikir, lîstine û wêtîmê 6-1 wan têk birine. "Piştî vê serkeftina me em di gelek maçan da biserketetin û me puanên xwe zêde kir, lê ew tîma ku li himberê me winda kir, êdî li pey hev gelek lîstikan winda kir û kete nav rewşeke xeter."

Kizil di dawiya axaftina xwe de got ku armanca wan a sezona 2011'an zelal e û ew dixwazin derbasî Lîga Superrettan bibin.

Lîstikvanên biyanî ji yên Kurd bêtir distînin

# Girêbestên Tîma Hewlêrê 1,4 milyon EURO ye



Sekreterê Tîma Fûtbolê ya Hewlêrê, Mehmûd Ezîz, ji bo Rûdawê ragihand ku tîma paytextê digel 11 lîstikvanên nû girêbestên nû îmzekirine û girêbestên hinek lîstikvanên berê jî nûkirine.

Li gor lîsteya ku bi destê Rûdawê ketiye û tê de girêbestên 22 lîstikvanên Tîma Fûtbolê ya Hewlêrê hene, diyar dibe ku girêbestên bêtiriya lîstikvanên biyanî ji girêbestên lîstikvanên Kurd bilindtir in. Eşkere dibe ku tevahiya diravê ku Tîma Hewlêrê wê bide girêbestan yek milyar û 903 milyon û 880 hezar Dînar in, her meh jî wê 41 milyon û 125 hezar Dînaran weke moçe bide wan.

Sekreterê Tîma Hewlêrê dibêje ku moçeyê mehane yê her lîstikvanekî yek milyon Dînar e. Girêbesta antrenorê tîmê, Eyub Udîşo jî 107 milyon û 100 hezar Dînar û mûçeyê wî jî 5 milyon û 945 hezar Dînar e. Rahênerê forvetan jî 42 milyon û 840 hezar Dînar digire û moçeyê mehane jî 2 milyon û 380 hezar Dînar e. Alîkarê Rahêner jî 30 milyon û 940 hezar Dînaran digire û moçeyê wî jî weke yê forvetan dibe. Karmend û xizmetkarên din jî her yek tenê miçeyekî mehane digire.

# Diyarbakirspor li erdê ye

## Di 8 maçan de tenê 3 pûan



Li avahiyên kulûbê xwarin dernakeve. Heqdestê personel û lîstikvanan nayê danîn. Yek bi yek skandalên nû derdikevin. Tîm di vê sezonê de hê bi serkneketiye. Alîgir bi hêrs in. Serokê kulûbê bi derewan her kesî dixapîne; rêvebirî nemaye. Sponsor tune. Stadyum tune, lê pirsgirêk gelek in."

Ev gotin di malpera Diyarbakirsporê ya fermî Diyarbakirspor.org de hatine nivîsandin.

Diyarbakirspor niha di dîroka xwe ya 41 salî de rewşa herî qels, bê serkeftin, lê bi gelek pirsgirêkan dijî.

Di sezona 2010/2011'an de di 8 maçên derbasbûyî de Diyarbakirspor hê ti serkeftinek bi dest nexistiye û puanên wê tenê 3 ye û di tabelleyê de di bînî hemû tîman de xuya dike. Ango li erdê ye.

Piştî maça roja şemiya borî li himberî Tavşanli Linyitspor jî ku dîsa di deqeya dawî de gol xwar û 0-1 wenda kir, antreonorê ku di vê sezonê de ti serkeftin bidestnexist Suat Kaya îstifa kir. Niha çavê kulûbê li antrenorekî nû digere û navê Recep Bayik derbas dibe. Bayik berê jî di Diyarbakrsporê de teknîk dîrektorî kiribû û gelek encamên bi serkeftî bidestxistibû, lê jiber ku bi rêvebiriyê re pirsgirêkên wî hebûn xwe paş ve kişandibû.

**Recep Bayik**

Li gor nûçeyan Diyarbakirspor.org'ê, edîtorên malperê xwe bi rêya telefonê gihandine Bayik û jê pirsîne ka wê dîsa were Diyarbakirsporê an na. Bayik wiha axifiye: " Em kurê vî bajarî ne. Em ti caran xwe ji kar dûr naxin. Carek şans dane me, me jî nîşan da ka em dikarin çi bikin, me ev yek îspat jî kir. Em ti caran ji bo karê li Diyarbakirsporê nabêjin na.Dema ji me re bêjin, were, em tên. Jiber ku em bi dil bi vê tîmê ve girêdayî ne."

# Ji bo bal bikişîne ser kêmendaman, xwe tazî kir



Tanya Kiewitz a Belçîkî bi helwesta ku bal bikişîne ser rewşa mirovên kêmendam, pozeke tazî da û ne tenê li welatê xwe, li Ewrûpayê jî di demeke kurt de bû navdar

Li Belçîkayê jineke bê mil, ji bo raya giştî di pirsgirêka mirovên kêmendam de agahdar bike, di çarçova kampanyakî de xwe tazî kir û deng da.

Tanya Kiewitz a 35 salî dibêje ku rojnamegaran dora wê girtine û jê re ji her aliyan daxwaziyên hevpeyvînê tên. Kiewitz di afîşa kampanyayê de bersingê reş li xwe kiriye û di binî afîşê de jî wiha hatiye nivîsandin: "Li çavên min binêrin, ez dibêjim li çavên min..."

Kampanyaya reklamê di heman demê de hem li Belçîkayê û hem jî li Fransayê ji aliyê komeleya alîkariyê ya bi navê CAP48 hat meşandin û biserkeftin dom kir. Reklam wisa biserkeftî derbas bû ku komeleya navborî ji bo bernameyeke televizyonê ya yek salî 4 mîlyon Eûro bidest xist.

Kiewitz jî ji ber poza xwe ya nîvtazî ev mehekê ye ku nikare bi tenê bimeşe, ji ber ku hertim rojnamevan, grafîker û kameravan li dû wê ne. Kiewitz wiha gazinc dike: "Min eleqeyeke wiha mezin hêvî nedikir. Di Facebookê de ez hatime dorpêçandin. Gelek kes tiştên erênî dinivsînin. Ji gelek welatên cîhanê rojnamevan dixwazin bi min re bikevin têkiliyê."

## Cêwikên Celine Dion çêbû



Stranbêja navdar a cîhanê, Celine Dion, li nexweşxaneya Saint Mary ya li eyaleta Florida ya Amerîkayê, cêwikekê zarokên wê çêbû.

Celine Dion (42) di demjimêr 11'ê sibeha roja şemî ya borî cêwikek zarokên wê çêbûn, ev jî piştî ku operasyonek ji wê re hat kirin. Peyivdarê bi navê wê hunermendê got, herdu cêwikên wê di rewşeke tendirustî ya baş de ne, lê ew ê van çend rojan di nexweşxaneyê de bimînin, ji ber ew beriya dema xwe hatine dinyayê, herwiha diyar kir ku Celine Dion jî wê van rojan bêhna xwe bide û paşî digel hevjînê xwe zarokan binav bikin.

## "Mêrên rût zîrek, seksî û maço ne"



Li gor rojnameya Amerîkî The Wall Street Journal jinê vê demê ji mêrên ser rût hezdikin. Di rojnameya navborî de tê gotin ku serê rût êdî di nav mêran de bûye wek mode û mêr porê wan hebe jî, tune be jî, serê xwe bi dil rût dikin. Rojname radigihîne ku jin jî mêrên ser rût bêtir seksî dibînin. Li gor nirxandina rojnameyê mêrên ku serê xwe bi jîlêtê rût dikin ji aliyê jinan ve bêtir zîrek, ango întellektuel,seksî û maço tên dîtin û jin xwe nêzî wan dikin. Ev nûçe wê xweş her guhê lîstikvan Bruce Willis.

## Xaçepirs



**Çeperast:** 1-Helbestvanekî Kurd. 2- Şûnmayî, qirş û qalên piştî çinînê – Pêwistî, mecbûrî (berepaş). 3- Kesên ji Yûnanê. 4- Notayek (berepaş) – Redkirin, qebûlnekirin – Dengê mîh û berxan. 5- Tiştên li ezman – Pîrik, dêya dayikê. 6- Nehat, li paş e – Vemirandin, avlêkirin. 7- Bizmarê mezin (berepaş) – Damar, kok – Qezenc, fêde (berepaş). 8- Li Latîn Amerîkayê şaristanîyek kevnare (berepaş) – Dayik, yalla (berepaş) – Mam, am. 9- Pêşkêşkirin, raberkirin – Nîşana millet û welat. 10- Çek û sîlehek kevnare – Xanim, kebanî, jin (berepaş).

**Serejêr:** 1- Dengbêja Kurd a navdar. 2- Lêborîn, azadkirin – Wendayî, wendakirina hêz yan alavan. 3- Navekî jinan (berepaş) – Heywanek deryayî. 4- Agirî, Gilîdax, çiyayê herî bilind ê Kurdistanê – Heywanek jehrîn. 5- Pereyên Japonyayê – Tayê nîv qalind, ne zirav ne qalind. 6- Kesên ji Fînlandîyayê (berepaş) – Ji niha û pê de, ji vir û pê de. 7- War, mesken – Navekî zilaman, mêrxas. 8- Zayend, bi malbatê ve girêdayî – Nexşa bedena mirov û heywanan – Gotina neyînî, ne, no. 9- Bi lez, ecele, xurt – Mehkeme, edalet. 10- Roja em tê de – Nebatek xwarinê. 11- Kok, damar, hîm – Wek, weke, dişibe – Bi Erebî "na". 12- Navekî zilaman (berepaş) – Per, liq, destê çûk û tilûran (berepaş). 1- Dengbêja Kurd a navdar. 2- Lêborîn, azadkirin – Wendayî, wendakirina hêz yan alavan. 3- Navekî jinan (berepaş) – Heywanek deryayî. 4- Agirî, Gilîdax, çiyayê herî bilind ê Kurdistanê – Heywanek jehrîn. 5- Pereyên Japonyayê – Tayê nîv qalind, ne zirav ne qalind. 6- Kesên ji Fînlandîyayê (berepaş) – Ji niha û pê de, ji vir û pê de. 7- War, mesken – Navekî zilaman, mêrxas. 8- Zayend, bi malbatê ve girêdayî – Nexşa bedena mirov û heywanan – Gotina neyînî, ne, no. 9- Bi lez, ecele, xurt – Mehkeme, edalet. 10- Roja em tê de – Nebatek xwarinê. 11- Kok, damar, hîm – Wek, weke, dişibe – Bi Erebî "na". 12- Navekî zilaman (berepaş) – Per, liq, destê çûk û tilûran (berepaş).

### Bersivên hejmara 67

| | 1 | 2 | 3 | 4 | 5 | 6 | 7 | 8 | 9 | 10 | 11 | 12 |
|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|---|
| 1 | a | l | m | a | n | y | a | ■ | a | a | r | e |
| 2 | v | | a | r | î | ■ | ş | e | r | b | i | k |
| 3 | d | e | r | û | n | î | ■ | z | a | ■ | n | o |
| 4 | e | r | e | b | e | ■ | m | î | l | a | d | ■ |
| 5 | s | î | m | ■ | z | a | ■ | y | ■ | k | o | k |
| 6 | t | ş | ■ | d | a | r | b | e | s | t | ■ | ş |
| 7 | x | ■ | b | a | n | î | ■ | t | e | o | r | î |
| 8 | a | l | e | m | ■ | n | û | ■ | r | v | e | t |
| 9 | n | e | n | a | s | ■ | d | o | g | ■ | w | ■ |
| 10 | e | m | î | r | a | t | ■ | x | o | ş | a | v |